# Tirk derbarê serxwebûna kurdan de çi difikirin?

Piştî nîqaş û amadekariyên serxwebûna Herêma Kurdistanê û êrîşên DAIŞ'ê, bala cîhanê zivirî ser Kurdistanê. Ji ber van geşedanen girîng û dîrokî me jî nîqaşa 'Serxwebûna Kurdistanê' da destpêkirin û bi vê mebestê me ev mijar ji kesên şareza, nivîskar û siyasetmedarên Tirkiyê pirsî û wan jî ramanen xwe anîn ziman. Rûpel 03



# PDK alîgirê tekoşîna hevkar e

Serokê PDK Sertaç Bûcak diyarkir ku ewê di bin sîwaneke fireh de girseyeke qerase hembêz bikin û li Kurdistanê bibin desthilatdar. Bûcak di derheqê partî û sisayesta xwe de wiha got: "Armanca me ew e ku gelê kurd li ser axa xwe bibe desthilatdar. Em amadene ku bi PKK'ê û hêzen kurd re xebatên hevpar bikin lê em nakevin bin hegemonyaya kesî." Rûpel 05


BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL Hejmar:19 06 - 12 Îlon 2014 basnews.com




## Leyla Xan

Sirrên ku bi stranan didin der

R16

# Yasaya referandûmê hat erêkirin




Serokê Herêma Kurdistane Mesûd Barzanî, yasayên Budçeya Partiyên Siyasî û Lijneya Hilbijartinan û Yasaya Referandûmê ku ji aliyê Parlemana Kurdistana Federal ve hatibûn derxistin erê kir. Piştî erê kirina Mesûd Barzanî wê di nava 90 rojan de lijneya hilbijartinan û ya referandûmê bê damezirandin. Piştî van geşedanan, ji bo referandûm pêk bê, divê parleman biryar bide.

Li gor vê yasayê, wê li herêmên wek; Kerkûk, Xaneqîn, Celewla, Tûzhurmatû û Şengalê yên ku piştî êrîşa DAIŞ'ê Pêşmerge lê bi cih bûne lê wek fermî di bin desthilata Iraqê de ne jî referandûm pêk bê. Li gor Xala 140. ya Destûra Iraqê, divê jimartina gelheyî ya van herêman bê kirin û dûre bi referandûmekê bê diyarkirin ka niştecihên van deran dixwazin bi Rêveberiya Herêma Kurdistanê ve bêne girêdan an bi Hikûmeta Navendî ya Iraqê ve. Rûpel 02

## Dizayî: Pêşmerge venakişe

Berdevkê Hikûmetê yê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Sefîn Dizayî bersiv da Serokê Tûgayên Bedir Hadî El-Emîrî ku gotibû; "Emê nehêlin ku Pêşmerge li Kerkûkê û herêmên din yên bi nîqaş bimîne" û da zanîn ku ewê Hêzên Pêşmerge ji tu herêmeke Kurdistanê venekişîn.

Dizayî daxuyand ku wê Pêşmerge ji tu derên ku wek herêmên bi nîqaş têne binavkirin venekişe. Dizayî da zanîn ku Pêşmerge niha parastina wan herêman dike û wiha domkir: "Ji ber ku artêşa Iraqê neparast Pêşmerge dakete wan herêman." Sefîn Dizayî destnîşan kir ku hêzên çekdar girêdayî Wezareta Pêşmerge ne û wezaret jî bi fermana Mesûd Barzanî tevdigere. Dizayî got; "Her tevgera Pêşmerge bi fermana Barzanî dikare pêk bê û tenê bi fermana wî Pêşmerge dikarin ji herêmên bi nîqaş vekişin."

Di vê navberê de piştgiriya çekan ya bo Pêşmergeyan jî didome. Dewletên Ewropa li ser formûla Hollandayê lihevkirin. Rûpel 02

## Pirsa bê bersiv: Ezdî kî ne?

Gellek şûnwarên pîroz yên Ezdiyan hene û Şengal jî ji van şûnwaran yek e. Sedemê grîngîdayîna Şengalê ya Ezdiyan tirbeyên wan ên li Şengalê ne. Ji bilî vê Şengal cihek çolistan e û di warê aborî û civakî de jî ne dewlemend e. Rûpel 11

## Hêlîna bazan: Amedî

Bêyî ku wek hêlîna bazan e, Amedî bi cîhwarên xwe yên dîrokî û keleha xwe jî xemleke Kurdistanê ye. Di demekê de jî Amedîye bo Pêşmerge wek nexweşxane hatiye bikaranîn. Rûpel 08-09

## Remza faşîzm û berxwedanê



Guftoyên li ser biryara ku Zindana Amedê veguheze Muzexaneyê bi berfirehî didomin. Ev zindan bi taybetî jî piştî derbeya leşkerî ya 12'ê îlonê bi êskenceyên dijwar û pêkanînên dijmirovî yên li hember girtiyên siyasî yên kurd deng dabû. Di dema êskenceyan de bi dehan girtî hatibûn kuştin û bi sedan jî seqet mabûn. Rûpel 04


Xwekuştina koçeriyê — Dr. Rodî Demirkapı R15

Teorî bi kurdî xweş e — Rewşa Weşangeriya Kurdi R14

Kedikerdiş û kedîbîyayîş — Sîstemê Usmanîyan kedîkerdişê însanan R06

# Bo referandûmê 90 roj!

Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistane Mesûd Barzanî, yasayên Budçeya Partiyên Siyasî û Lijneya Hilbijartinan û Yasaya Referandûmê ku ji aliyê Parlemana Kurdistana Federal ve hatibûn derxistin pesend kir. Piştî pesendkirina Mesûd Barzanî wê di nav 90 rojan de lijneya hilbijartinan û ya referandûmê bê damezirandin. Piştî van geşedanan, ji bo referandûm pêk bê, divê parleman biryar bide.

Berdevkê Çapemeniyê yê Parlemana Kurdistanê Tariq Cewher da zanîn ku her du yasa di 31'ê Gelawêjê de ji aliyê Barzanî ve hatine pesendkirin û piştî ku di rojnameya fermî de bê çapkirin, ev yasa wê bikevin meriyetê.

Li gor vê yasayê, wê li herêmên wek; Kerkûk, Xaneqîn, Celewla, Tûzhurmatû û Şengal yên ku piştî êrîşa DAIŞ'ê Pêşmerge lê bi cih bûne lê wek fermî di bin desthilata Rêveberiya Navendî ya Iraqê de ne jî referandûm pêk bê. Li gor Xala 140. ya Destûra Iraqê, divê jimartina gelheyî ya van herêman bê kirin û dûre bi referandûmekê bê diyarkirin ka niştecihên van deran dixwazin bi Rêveberiya Herêma Kurdistanê ve bêne girêdan an bi Hikûmeta Navendî ya Iraqê ve.



Wek tê zanîn Rêveberiyên Bexdayê ew hukmê destûrê ku pêwîst bû heta sala 2007'an pêk bianîna lê belê pêk neanîbûn û ev pekneanîn bûbû pirsgirêka herî mezin a navbera Bexda û Hewlêrê.

Mesûd Barzanî, di demên çûyî de gotibû: "Piştî vê rewşa nû, wê kurd du rê bidine ber xwe. Rêya yekem; Bi berçavgirtina rewşa nû ya herêmê re, ewê hewl bidin ku bi şie û sunneyên ne tûndrew re çareseriyeke siyasî ya berfireh pêk bînin. Rêya duyem; Ji bo gelê kurd mafê çarenûsa xwe bi dest bixe, wê Rêveberiya Herêma Kurdistan xebatên xwe yên ji bo referandûmê bidomîne"

Piştî êrîşa DAIŞ'ê ya bajarên Iraqê têkiliyên Bexda û Hewlêrê bi daxuyaniyên tûj derzên mezin xwaribû û piştî ku Serokkomarê kurd ê nû Fûad Mahsûm erka damezirandina hikûmetê ji Malîkî stend û da Îbadî, krîz ji bo demekê kurt hate taloqkirin.

Gengeşiya ku demek drêj bû li Iraqê dom dikir, di 10'ê Gelawêjê de, bi dagirtina Misûlê û bi pêşveçûna ber bi Bexdayê ya DAIŞ'ê re pir berztir bû. Di 12'ê Gelawêjê de hêzên Pêşmerge jî ketibûn bajar û navçeyên kurd yên ku Artêşa Irarqê jê vekişiyabû û rêveberiya wan deran xistibû destê xwe.

Hêzên Pêşmerge, her wiha bi vî awayî dest danîbû ser rêveberiya Kerkûkê jî. Mesûd Barzanî diyar kiribû ku ji alî Hêzên Pêşmergeyan ve bidestxistina rêveberiya Kerkûkê pêwîstiyek e û gotibû; "Ji bo Hikumeta Federal ya Iraqê vê pirsgirêkê çareser bike em 10 salan sekinin. Arteşa Iraqê ji vê herêmê vekişiya. Pêwîstbû ku hêzên Pêşmerge kontrola wan herêman bikira. Me maddeya 140. pêk anî û êdî ev madde kete meriyetê. Ji niha û pê ve emê li ser vê mijarê nepeyivin."

Piştî biryardayîna referandûmê ya Rêveberiya Kurdistan, DAIŞ'ê berê xwe ji Bexdayê zîvirand û di 3'ê Tebaxê de bi ser Şengalê ve êrîşî Kurdistan kiribû.

# Pêşmerge ji ti deverî venakişe

Berdevkê Hikûmetê yê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Sefîn Dizayî bersiv da Serokê Tûgayên Bedir Hadî El-Emîrî ku gotibû; "Emê nehêlin ku Pêşmerge li Kerkûkê û herêmên din yên bi nîqaş bimîne" û da zanîn ku ewê Hêzên Pêşmerge ji tu herêmeke Kurdistan venekişin.

Dizayî li ser vê mijarê daxuyand ku wê Pêşmerge ji tu derên ku wek herêmên bi nîqaş têne binavkirin venekişe. Dizayî da zanîn ku Pêşmerge niha parastina wan herêman dike. Dizayî got; "Ji ber ku artêşa Iraqê neparast Pêşmerge dakete wan herêman."

Sefîn Dizayî destnîşan kir ku hêzên çekdar girêdayî Wezareta Pêşmerge ne û wezaret jî bi fermana Mesûd Barzanî tevdigere. Dizayî got; "Her tevgerînên Pêşmerge bi fermana Barzanî dikare pêk bê û tenê bi fermana wî Pêşmerge dikarin ji herêmên bi nîqaş vekişin."

Di derbarê alîkariyên çekan de jî Sefîn Dizayî da zanîn ku çend dewletan aşkere kirine ku ewê alîkariya çekan li Herêma Kurdistan bikin. Dizayî diyar kir ku Almanya daxuyandiye ku ewê çek bişîne û got: "Piştî Şerê Cîhanê yê 2. yekem car e ku Elmanya çek dişîne derve. Bêguman ev helwest ji bo Herêma Kurdistanê pir grîng e. Terora DAIŞ'ê herkesî eleqedar dike û ev rêxistin ji bo ewlehiya hemû cîhanê gefeke mezin e."



Çekên elman gihîştin Kurdistanê

Dizayî di derbarê alîkariyên çekan de bang li Hikûmeta Iraqê kir û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Li gor Destura Iraqê divê Bexda alîkariya çekan li hêzên Pêşmerge bide, lê belê heta niha qet vê xala destûrê pêk nehanîn. Ji ber vê yekê berpirsyariya hemû encamên neyênî yên vê mijarê ya Hikûmeta Iraqê ye."

**Çekên Elmanyayê di rê de ne**

Di vê navberê de ji welatên cihê yên cîhanê ji bo Kurdistanê alîkariya çekan didome. Di derbarê vê mijarê de Berdevkê Wezareta Parastinê ya Elmanyayê Yarbay Uwe Roth da zanîn ku sefera alîkariya leşkerî ya ku çek û teqemenî tê de tune ji bo Kurdistanê bi balafirê bê şandin.

Roth diyarkir ku; çek û cebilxanaya ji Pêşmerge re bê şandin taloqî de-



Sefîn Dizayî

mek pêş kirine. Roth: "Me derbarê çekên Almanya dişîne de perwerdeya beşa li Almanya bê kirin diyar kir. Di nav vanan de Tankşikênên Mîlan, wesayîtên zirhî yê Dîngo û perwerdeya tankêra heye."

**Wê çekan Holanda bigihîne**

Çekên welatên Rojhilata Ewrûpayê ku li hember DAİŞ'ê biryar dan ji Herêma Kurdistanê re bişînin Holanda bigihîne herêmê.

Wezîrê Parastinê yê Holandayê Jeanine Hennis Plasschaert, derbarê mijarê de li parlementoyê agahî da. Plasschaert diyarkir ku Holanda alîkariya çekan ji bo Pêşmerge nake, tenê alîkariya dewletên din digihîne. Plasschaert got ku; balafirên alîkariyê dibin wê di demek kin de birêkevin.



## Serxwebûn

# Tirk çi difikirin?

Piştî nîqaş û amadekariyên serxwebûna Herêma Kurdistanê û êrîşên DAIŞ'ê, bala cîhanê zivirî ser Kurdistanê. Ji ber van geşedanen girîng û dîrokî me jî nîqaşa 'Serxwebûna Kurdistanê' da destpêkirin û bi vê mebestê me ev mijar ji kesên şareza, nivîskar û siyasetmedarên Tirkiyê pirsî û wan jî ramanen xwe anîn ziman:



Alper Taş



Hüseyin Hatemi



Avni Özgürel



Ömer Laçiner



Cevat Öneş

**Alper Taş / Serokê Giştî yê ÖDP'ê: Em li mafê dewletbûnê ya kurdan xwedî derdikevin**

Di sedsala hilberîna bîrdoziya netewe-dewletan û destpêka damezirandina netewe-dewletan de du gelên ku ji vê bîrdoziyê tîn wernegirtine û nebûne dewlet hene: Kurd û filistînî. Nasnameya wan a neteweyî heye lê dewleta wan tune ye. Di rastiyê de nehîştin bibin dewlet û hatin astengkirin. Lê her çiqas nebûbin dewlet jî mafê wan ê xwebirêvebirinê û diyarkirina çarenûsa xwe heye. Ger hun ji min bipirsin ez dibêjim divê meriv di netewe-dewletê de asê nemîne û vê li dû xwe bihêle. Pergaleke demokrat, azadîpyarêz û yeksan ji pergala netewe-dewletê baştir e. Li hember van nakokiyan ji bo me tiştê herî grîng xwedî lê derketina van tiştan e.

**Cevat Öneş / Alîkarê Rawêjkarê MÎT'ê yê Berê: Serxwebûn maf e, lê mijareke nakok e**

Her netew xwedî vî mafî ye, lê li Tirkiyê ev mijar cihê nîqaşê ye. Bi taybetî îro pêvajoya avakirina dewletê bi konjoktur, hevsengiya hêzê û bi herêma ku serxwebûna xwe dixwaze ve têkildar e. Wek mînak; Li Rojhilata Navîn mafê Kurdistana Iraqê yê serxwebûnê heye. Lê belê ger ku hêzên herêmê û yên navnetewî li ber çavan bêne girtin, divê kurd pirsgirêkên nû neafirînin û vê mijarê li gor mercên van rastiyan binirxînin. Ku em bi rîwangeya kurdên Tirkiyeyê binêrin, bi demokratîkbûyîna Tirkiye re herêma kurdan jî demokratîk dibe. Bi taybetî serkeftina pêvajoya demokratîkbûyîna Tirkiye ji bo kurdan grîng e. Ji ber ku em dibînin berjewendperestiyên herêmî dibin sedemên çi aloziyan, dive şert û merc ji kurdan re pirsgirêkên nû dernexin. Divê em encamên damezirandina netewdewleteke ku dikare bibe sedemê şerên nû, piştguh nekin. Divê Herêma Kurdistanê xwedî li destkeftiyên xwe derkeve û wan biparêze.

**Erol Katırcıoğlu / Rojnameger – Nivîskar: Serxwebûn hewceyî vaj û xwestinê ye**

Kurd daxwaza serxwebûnê dikin û ev daxwaz mafê wan e. Lê belê 'gelo ev serxwebûn wê çawa pêk bê?' meriv dikare li ser vê pirsê nîqaş bike. Ji ber rewşa navxweyî ya Iraqê ez dibêjim cihêbûna kurdan cihêbûneke xwezayî ye. Ger ku di nav dewletên neteweyî de demokrasî tunebe yekbûn pêkan nabe. Li Iraqê komên ku xwe wek sunne, şîa, tirkmen û hwd dibînin hene. Ji ber vê yekê, divê di nav van hemûyan de yekîtiyek hebe. Ger ku ev nebe demokrasî jî nabe. Lê belê bi siyaseta ku dimeşîne û helwesta wê ya aştîxwaz diyar dike ku Herêma Kurdistanê ber bi serxwebûnê ve diçe.

**Ömer Laçiner / Weşanger, Nivîskar: Mafê diyarkirina çarenûsa kurdan nayê nîqaşkirin**

Mafê diyarkirina çarenûsa kurdan nayê nîqaşkirin. Divê kurd vê yekê nîqaş bikin; 'Gelo emê çawa serxwebûna xwe pêk bînin?' Nîqaşên li ser serxwebûna kurdan tewş in. Kurd, dikarin di nav sînorê kurdan de dewleta kurd damezirînin an jî bi netewên herêmê yên din re yekîtî û wekheviyekê ava bikin. Ger ku kurd bibin xwedî dewlet, wê bi dewletên din re nîqaşên axê û yên mijarên din derkevin holê û dibe ku bi dewletên din re pevçûn pêk bên. Rêbaza din jî rêbaza siyasî ye û ew jî li ser esasên yekîtî û wekheviyê bi gelên din re bijî û têkiliyên bi vî awayî bêne avakirin. Ji ber ku pêwîstiya guherîna nexşeya Rojhilata Navîn heye, em îro vê mijarê nîqaş dikin. Rêbaza avakirina vê yekê di destê kadroyên siyasî de ye. Gava ku biryara serxwebûnê bidin û desthilatdariya xwe saz bikin, divê di qada navnetewî de jî bêne nasîn. Komara Tirk a Bakurê Kibrisê jî serxwebûna xwe ragihandiye lê tu kes wan nas nake. Ji niha û pê ve divê ji tecrûbeyên dîrokî sûd werbigirin.

**Dr. Nihat Ali Özcan / Rojnamevan – Lêkolînerê Weqfa Geşedandina Polîtîkayên Aborî yên Tirkiye: Serxwebûna Başûr bi jeopolîtîkê ve girêdayî ye**

Kurd jî wekî hemû gelên din dikarin serxwebûnê bixwazin. Bi taybetî divê di nav siyasetmedaran de nîqaş berdewam bikin. Serxwebûna Herêma Kurdistanê bi jeopolîtîka û helwestên dewletên cîran ve girêdayî ye. Bi petrolê ve girêdayî ye û divê vê petrolê bifroşe, di nav wan û ereban de pirsgirêk hene, divê bêne çareserkirin. Divê pirsgirêkên di nav xwe de jî çareser bike û herêmeke ku piştgiriya wan bike hebe. Ger ev nebin, serxwebûn tenê bi gotinê nabe. Ku di van mijaran de li hev bikin serxwebûn dibe, an jî divê vê xwesteka xwe taloq bikin heta demeke pêş. Piştî ku ev tişt hat gotin pirsgirêk berdewamkirine. Li gor min niha dema serxwebûnê nîne, ji ber ku berjewendiyên kurdan û yên Emerîkayê li hev negoncivîne. Ev, mijar bi pêşketinên li Tirkiyê û bi Emerîka û Iraqê ve têkildar e.

**Prof. Dr. Hüseyin Hatemi / Hiqûqnas: Divê armanc ne serxwebûn, wekheviya hemwelatiyan be**

Li gor min; heta ku welatên îslamî yên Rojhilata Navîn wek Ewropayiyan yekîtiyekê ava nekin, divê armanca wan ne serxwebûn be, li her welatî wekhevî be. Ku wisa nebe, wê parçe bibin û bibine koleyên emperyalîzmê.

**Avni Özgürel / Rojnameger: Ez piştgiriya serxwebûna Kurdistana Iraqê dikim**

Ji ber ku ji Şêx Mehmûd Berzencî bi şûn ve li Rojhilata Navîn mafê kurdan hatiye xwarin, serxwebûna kurdan pêk tê. Piştî vê, êdî li Tirkiye tevgera kurd federasyonê pêk tîne, konfederasyonê pêk tîne ez nizanim, lê belê divê bi Tirkiye re hevgirtiyê bike.

## Zindana Amedê

# Remza faşîzm û berxwedanê

Guftoyên li ser biryar û projeya ku Zindana bi navû deng ya Amedê veguheze Muzexaneyê bi berfirehî didomin. Ev zindan bi taybetî jî piştî derbeya leşkerî ya 12'ê îlonê bi êskenceyên dijwar û pêkanînên dijmirovî yên li hember girtiyên siyasî yên kurd deng dabû. Di dema êskenceyan de bi dehan girtî hatibûn kuştin û bi sedan jî seqet mabûn.

Serokê Weqfa 78'an Celalettîn Can di wê baweriyê de ye ku ev biryar wê sûdê li aştiya civakî bike û kêfxweşiya xwe ya ji bo biryara fermî anî zimên. Celalettîn Can wiha axivî "tapûya wê qadê îro li ser navê dewletê ye, lewma pêdivî bi biryara lijneya parlemenê heye daku ji aliyê burokratîk ve ti astengî nemîne."

Weqfa 78'iyan, bi armanca ku Zindana Amedê veguheze muzexaneyê bi qasî 100 hezar îmze berhev kiribû û ev îmze weke daxwaznameyekê pêşkêşî Parlemena Tirkiyê kiribû.

Edip Polat

Celalettin Can

Cafer Solgun

### "Pirsgirêka Kurd Zindana Amedê tîne bîra mirovan"

Celalettîn Can di derbarê vê mijarê de da zanîn ji bo ku Zindana Amedê veguheze mûzexaneyê, wan 7 sal berê dest bi xebatan kirine û di çarçoveya vê projeyê de wan xwe gihandine gelek kesên ku şahidiya zilmê kirine. Celalettîn Can wiha dom kir: ' Sala çûyî, bi 1500 girtiyên wê demê re me serî li dadgehê da û piştî vê serlêdanê lêpirsîn hate kirin. Di dema van xebatan de fikreke hevbeş derkete holê; ew jî ew bû ku Zîndana îro ya Amedê veguhezînin Muzexaneyê. Di çarçoveya vê projeyê de em ketin nava xebat û hewldanan. Me 100 hezar înze kom kirin. Ji bo zindan veguheze mûzexaneyê, li gel hin dezgehan me bi rayedarên hikûmetê re jî hevdîtin pêkanîn. Di encama van hevdîtinan de bersiveke erênî derket holê. Em pir kêfxweş bûn. Niha em li bendê ne ku ev biryar pêşkêşî parlemenê bê kirin.

### Divê avahiyên ku dû re hatine lêkirin birûxin.

Celalettîn Can da zanîn ku ew dixwazin avahiya zindanê weke xwe bimîne û neyê guhertin. Can wiha axivî: "Hin aliyên zindanê di xeteriya rûxandinê de ne, divê ev der bêne zexmkirin û qewînkirin û hin avahiyên ku dû re lê hatine zêdekirin jî bêne rûxandin. Her wiha divê li hin deran xebatên arkeolojik bêne kirin. Dema ku ev kar biqedin emê navê kesên ku di hucreyan de mane bikar bînin. Emê berxwedana 4'an ku bûye sembola Zindana Amedê jîndar bikin. Alavên ku di êşkenceyê de hatine bikaranîn divê di mûzeyê de bêne pêşandan. Armanca me ewe ku ev zindan bibe mûzexaneyeke baş û jîndar."

### Divê navên sûpayên êşkencekar yek yek bêne nivîsîn

Serokê Komeleya Rûberûbûnê Cafer Solgûn jî yek ji wan kesên aligirê veguhestina mûzexaneyê ye. Solgun da zanîn ku wan ji berê ve dixwest ku ev zindan veguheze mûzexaneyê û got: "Ji ber ku ev mijar wê rûberûbûna raboriyê pêkan bike ev gaveke erênî ye." Cafer Solgûn pêşnîyaz dike ku di derbarê plansaziya mûzexaneyê de hem fikirên mexdûran û hem jî yên xizmên maxdûran werin pirsîn û nêrînên wan neyêne piştguhkirin.

Solgûn wiha axivî: "Raya giştî ya demokrat ji berê ve dixwaze ku ev zîndan veguhêze muzexaneyê. Bi salan e em hewl didin ku ev mijar bikeve rojevê. Hikûmet herçend ji bo berjewendiyên xwe yên siyasî ev biryar dabe jî wateya encamê naguhere. Ev biryar gaveke rast û erênî ye. Li gor min divê zindanên Metrîs û Mamakê jî veguhezin mûzexaneyê. Ev zindanên ku em behsa wan dikin sembolên faşîzma 12'ê Îlonê ne.

Divê 12'ê Îlonê di çarçoveya sûcdariya li dij mirovahiyê de bê nirxandin, em hewl didin vê yekê jî bi parlemenê bidine pesendkirin. Ev mûzexane bi awayên klasîk ên avakirina mûzexaneyên Wezareta Çandê nayê avakirin. Divê Zindana Amedê bibe cihê pêşandana rûyê herî reş û xwînxwar ê faşîzma 12'ê Îlonê."

Li ser pirsa me ya: Divê kî veguhestinê pêk bîne û çawa bê veguhestin, Solgun wiha axivî:

Girînge ku Odeyên Mîmar û Endezyaran li gor van daxwaziyan proje amade bikin û ji nav van projeyan projeya herî guncav bê hilbijartin. Divê dewlet pêşengiya vê pêvajoyê bike û piştgiriyê bide projeyê.

Di mûzexaneyê de divê alavên êşkenceyê û durûşmên nîjadperest bêne pêşandan. Gelek kesên ku di wê zindanê de hatine kuştin hene. Divê di hucreyên wan kesan de tiştên wan ên ku meriv dikare ji xizmên wan temîn bike bêne pêşandan. Wekî din, divê navên sûbayên êşkencekar ên wê demê yek bi yek bêne nivîsandin.

## Doza 12'ê Îlonê negihîşt encamekê

Ji mexdûrên girtîgehê Edip Polatjî di derbarê mijarê de wiha got: "Girtîgeha Amedê xwedî grîngiyeke dîrokî ye. Di sala 1982'yan de ez li wir bûm, temenê min 20 bû. Di wan salan de li ser girtiyan êşkenceyeke sistematik pêk dihanîn. Gelek tişt li ser vê mijarê hatine nivîsandin. Dû re derkete holê ku ew êşkence bi rêbazeke sistematik û ji alî kadroyên erkdar ve hatine kirin. Ev xal, dikare bibe mijara lêkolîneke din. Divê kiryarên vê jî bene darizandin. Doza me hê jî didome. Demek berê dozger bi boneya vê mijarê gazî min kir û hin wêne nîşanî min dan. Lê 30 sal di ser re derbas bûne, sûretê mirovan diguherin. Ji bilî du sê kesan min sûretê ti kesî nas nekir. Ji min re gotin ku ew doz bi demborîtiyê bi encam bûye. Her kesî bi serê xwe doz vekir, dibe ku sedemê vê encamê ev be. Ger Girtîgeha Amedê bibe mûze emê kêfxweş bibin lê ev têr nake. Ji ber ku ewê êşên me li wir kişandiye bibîr bîne û bibe neynik sosreta wê dere, baş e. Wek nimûne; niha milên min, ji ber êşkenceya wê demê, hê jî bêhêz û bêtaqet in. Wan, em şandin Tip'a Adlî ya Stenbolê û me rapor stend. Em dixwazin vê meseleyê bişopînin. Ez wisa bawerim ku ger Tirkiye ber bi demokratîkbûnê ve biçe wê hesabê vê jî bê lêpirsîn. Di derbarê wan kadroyên sûcdar de divê agahî bên kom kirin daku herkes zanibe ka kê ev kiryar û êşkence pêk anîne Ev kes çûne kuderê, yan jî li ku ne û niha çi dikin, em nizanin. Ez dixwazim sûcdar hesabê vê bidin."



Bêzar Bêwar

## Serokê PDK'ê Sertaç Bûcak

# PDK alîgirê tekoşîna hevkar e

**Bûcak diyarkir ku ewê di bin sîwaneke fireh de girseyeke qerase hembêz bikin û li Kurdistanê bibin desthilatdar. Bûcak: "Armanca me ew e ku gelê kurd li ser axa xwe bibe desthilatdar. Em amadene ku bi PKK'ê û hêzen kurd re xebatên hevpar bikin lê em nakevin bin hegemonyaya kesî.**

***Wek PDK hunê li ser çi esasî xebatan bimeşînin. Hunê ji bo kurd û Kurdistan çi bikin?***

Partiya Demokrat a Kurdistan a Tirkiye, partiyeke navend-neteweyî ye ku wek PDK'a Iraqê ya wê deme, bi drûşma 'Ji Tirkiye re demokrasî û ji Kurdistan re herêmeke otonom, mafê neteweyî û demokratîk ê gelê kurd diparêze. Ew partiya navendî di qada siyasî de wê demê bû xwedî girseyeke mezin. Lê piştî damezirîna wê her dû pêşengên wê bi sûîkastan hatin kuştin. Piştî van sûîkastan partî bi xwe ve nehat. Lê bele em di vê pêvajoyê de, PDK'ya ku li gor mercên wê heyamê, li gor konjoktur û mercên siyasî yên wê demê birêxistin bûbû arasteyî zemîneke yasayî dikin û di vê zemîna rewa de, li ser axa Tirkiyeyê em partiyeke neteweyî û demokrat ji nû ve ava dikin.

***Li Cîhanê û li Kurdistanê li gor mercên demê partî û şopên partiyên kevn ji nû ve dertên qada siyasete. Hun jî piştî salên dirêj vegeriyan Tirkiyeyê, PDK jî guherîneke wiha fikirî?***

Divê PDK bibe partiyeke ku daxwazên gelê Kurdistan bi cih tîne. Ne tenê li Başûrê Kurdistan li her perçeyên Kurdistan bibe partiyeke ku çareseriyê hildiberîne. Li Başûrê Kurdistan, bi taybetî piştî êrîşa DAIŞ'ê Birêz Barzanî bû aktorekî grîng. Em jî ji wê kevneşopiyê tên. Jixwe me di kongreya xwe de nûjenparêziyê ji xwe re kire armanc. Wek nimûne; Em dixwazin ji zemîna deryasayî ya kevn derbasî zemîneke yasayî bibin.

***Te got 'Ji daxwaza dewleteke neteweyî bêtir, em dixwazin polîtikayeke neteweyî ku destwerdana qada jiyana kêmneteweyan nake hilberînin' Niha li Kurdistan pêvajoyeke dewletbûyînê heye, dewleteke neteweyî ya Kurdistan çi sûdê yan jî ziyanê li kêmneteweyan dike?***

Di nav çepgirên Tirkiye de tirsa dewleteke neteweyî ya Kurd heye. Dewleta neteweyî ji bo tirkan jî û ji bo aliyên ku sûd jê werdigirin jî tiştekî xerab nîne. Dewleta neteweyî wek ku di bernameya HDP'ê de hatiye nivîsîn ji bo filistîniyan jî tiştekî xerab nîne. Lê tê gotin ku 'ji bo kurdan xerab e' Ev tiştekî çewt e. Çiqas mafê filistîniyan ê dewletbûnê hebe mafê kurdan ê dewletbûyînê jî heye.

***Kurdên Bakur jî xwedî vî mafî ne?***

Ger ku şert û merc goncav bibin, çima nebe? Kurd neteweyek e, ger ku rojek pêwîst bibe ew jî dikarin bibin xwedî dewlet, lê belê îro ew şert û merc tune ne. Ger şert û merc goncav bibin wê ew pêvajo ji xwe ve biafire.

***'Netewîbûn û demokratî' wek têgehên ku bi hev re nakok in xuya nakin?***

Ez wisa nabînin. Jixwe nûjenparêziya me jî ji wê derê tê. Niha daneyên berbiçav hene. Wek nimûne; Li Başûrê Kurdistan tirkuman, suryanî, keldanî û hemû kêmnetewe xwedî mafên xwe yên neteweyî û demokratîk in. Dibistan û partiyên siyasî yên wan hene û dezgehên weşanê yên wan hene. Ermenî jî di parlamenê de xwe temsîl dikin. A grîng ew e ku ev rastiyên hanê bêne dîtin. Ji ber vê yekê netewetî û demokratî ne têgehên ku bi hev re nakok in. Rêbaza xeter tûjkirina netewetiyê ye, weke Kemalîzma li Tirkiye ku ji bilî xwe hewl dida ku hemû cûdahiyan di xwe de bihelîne û asîmîle bike. Em xwedî feraseteke bi vî awayî nîn in. Di nirxên me yên neteweyî de ev tişt heye; Li welatên din çawa gel dibin desthilatdar, li Kurdistanê jî gelê kurd bibe desthilatdar.

***Li Bakurê Kurdistan li hember navê PDK'ê dûrmayînek heye?***

Ez wek kesekî ku berê serokatiya partiyekê kiriye, dibêjim ku ji çar aliyê Kurdistan daxwazî ji me hatin kirin. Kesên ku xwestin di pêvajoya rêxistinbûnê de alîkariya me bikin hebûn. Her çiqas em partiyeke nû bin jî, em bawer dikin ku li Kurdistan, ji me re û bi taybetî ji Barzanî re gilgermiyeke hêja heye. Ku em bala xwe didin baldariya vê xebatê, em dikarin bêjin ku PDK, wê bibe perçeyek ji dahatiya Kurdistan, belkî jî di dahatiyê de li Kurdistana azad du xet hebin; yek xeta PDK'ê û yek jî xeta PKK'ê.

***Hevnegirtina kurdên çar perçeyan ji yekîtiya neteweyî re ne asteng e?***

Yekem civîna fermî ya ji bo Kongreya Neteweyî ya Kurdistan li Hewlêrê pêk hat. Çima? Ji be ku Hewlêr girîngtirîn bajarê Kurdistan e û di rewşeke azad de ye. Ji ber ku dikare derfetên baştir pêkan bike, li wir hate pêkanîn. Ger em qala çar perçeyên Kurdistan bikin, kurdên herêmên cûda yên Kurdistan, bi şêweyên jiyanên xwe ji hev cûda ne. Vê yekê tîn li siyasetê jî kiriye.

***PKK, li Bakur xwedî girseyeke mezin e û di rastî de PDK tekane hêz e ku dikare ji PKK'ê re bibe reqîb. Di vê bareyê de partiya we dikare feraseteke çawa bidozîne?***

Em reqabetê wek reqabeta demokratîk dibînin. Di kongre û civînên xwe de, em bi baldarî nêzîkî hemû rêxistinên kurdan dibin û em wan wek reqîb nabînin. Em ji tekoşîna hemû rêxistinên kurdan a ku ji bo kurdan tê dayîn hurmetdar in. Dema meriv li sedemên pêşveçûna rejîmên demokratîk ên cîhanê dinihêre, meriv dibîne ku ev rejîm xwedî pircûrehiyeke siyasî ne. Partiyek dibe desthilatdar, dûre têk diçe û dibe muxalefet û xebatên xwe bi wî awayî didomîne. Ji bo li vî welatî alternatîfên baştir derkevin holê em têdikoşîn.

## Ji bo afirandina wan şert û mercan, gelo wê partiya we bi taybetî têbikoşe?

Ger ku meriv ji bo polîtîkayek neteweyî û demokrat têbikoşe, encamên vê têkoşînê diyar in. Ev hem bi konjoktura Tirkiye hem jî bi ya dinyayê re têkildar e. Her wiha divê pêdiviya dewletbûyînê hebe. Ger ku meriv li welatekî demokrat bijî û ger ku meriv li ser axa xwe xwedî mafê dadwerî û birêvebirinê be û yeksanî û wekhevî hebe, dibe ku bi tirkan an jî neteweyên din re pêdiviya kurdan bi dewleteke serbixwe tunebe. Lê belê, çawa mafê tirkan ê dewletbûnê hebe, mafê kurdan jî ewçend heye. Ez vî mafî radestî tu kesî nakim, li gor min radestkirina vî mafî ne tiştekî rast e. Di şert û mercên îro de dibe ku nebe, lê belê mantiqa 'Nabe ku kurd bibin dewlet' seqet e. Ereb û tirk dikarin bibin dewlet, hemû gelên cîhanê dikarin bibin dewlet, li beramber vê yekê ger ji kurdan re vî mafî rewa neyê dîtin ev çewt e. Ger ku em werin ser mijara netewe-dewletê, li gor min daxwaza serxwebûnê ya Rêveberiya Federal a Başûrê Kurdistanê ji bo starekirina netewe û komên olî yên ku li ser wê axê dijîn gaveke grîng e.

# Kedîkerdiş û kedîbîyayîş

Roşan Lezgîn



Mîyanê ma kurdan de kulturê weyekerdiş û seydkerdişê zerencan zaf aver o. Senî kedî benê, senî weye benê, senî seyd benê...

Folklorê ma de zî cayê zerencan zaf esto. Mîyanê şarê ma de qalê zerencan tim bîyêne.

Neke tena mîyanê grûba ma kirdan de, eynî sey ma, mîyanê heme grûbanê bînan yê kurdan de zerence sembolêko muhîm a.

Yeno mi vîr, hetanî serranê 1990an zî Dîyarbekir de, vera Cemî Kebîr de qewexaneyê seydvanan estbi, komela înan estbî. Gama ke seydvananê namdaran behsê seydî kerdêne, şarî bi heyranî goşdarî kerdêne. La nika seyd çin o.

Helbet mîyanê şarî de fehmê tebîetî, fehmê ekolojîyî sey verî nîyo. Êdî heq û huqûqê heywanan ra qisey beno.

Heto bîn ra her ca goştê kerganê haziran roşîyeno. La esas, nê da-vîst serranê peyênan de seba ke koyanê Kurdistanî de şer estbi, seydvanî nêeşkayî şirê seyd. Heto bîn ra dewî veşnîyayî, ameyî vengkerdiş. Demografyaya kurdan temamen ser û bin bîye. Coka sey zafê kulturê ma kulturê seydvanîye zî nêvîyart bi neslê neweyî û mîyan ra wedarîya. Kulturê seydvanîye reyde gelêk çeku û termê ma zî vîndî bîy. Mesela, êdî ma nameyê alet û edewatanê seydwanîye nêzanê.

Ez da-des serrî înşatan de xebitîyaya. Zafane ma şîyêne şaristananê dûrî de çend aşmî pêsero xebitîyayêne. Kar giran bi. Taşeronê ma bêwijdan bî. Ma serê sibayî saete şeş de weriştêne, lezûbez areyîya xo kerdêne. Areyî de çay, zeytunî û rûnê Sana bî. Saete hewt de ma dest bi kar kerdêne, bêke boya xo bidin hetanî saete duwês xebitîyayêne.

Îstîrehetê ma yê nêmroje saetêk bi. Werdê ma yê mîyanrojî belxul, tirşê fasulîyan yan tirşê kartolan bi. Saete yew de ma ancî dest pêkerdêne, hetanî saete şeş-hewtê şanî kutikane xebitîyayêne. Şamîya ma zî tim mişewşî bî. Mişewşîyêka bêrûne, bêaqîte. Heto bîn ra ne sîgortaya ma ne heq û huqûqê xebate. Kam cayêk ra bikewtêne war, seqet bimendêne yan bimerdêne, xo rê kîseyê may û pîyê xo ra şîne.

Ma çend serrî mewsimê hamnanî de hetê Serhedî de; Mûş, Erdîşe, Tetwan û Melazgir de xebitîyayî. Zafê embazê ma seydvanî bî, zerencî weye kerdêne. Roja ke kêmanîyêk înşat de bibîyêne, embazanê ma şefeqêk rew rextê xo girêdayêne, qefesê zerencan û çifteyê xo girewtêne şîyêne seyd. Mi xo rê qawîşe de kitab wendêne. Tim binê sereyê mi de çend hebî kitabî estbî. Mi înşat de şîirî, hîkayeyî, romanî wendêne. Mi derheqê tarîxê kurdan de, derheqê tarîxê miletanê bînan de kitabî wendêne. Embazê ma yê ke înşat de xebitîyayne, guneyê xo bi mi ardêne, vatêne, yan ti do çimanê xo kor bikerî yan zî aqil bipernî, gêj bibî. Şukir Homayî rê, çimê zaf weş vînenê. De pernayîşê aqilî û gêjîtî zî, her kes bineyke gêj o.

Embazanê ma ra yewêko extîyar estbi. Nameyê ey Xal Emîn bi, dewa Licê Entax ra bi. Entax merkezê hukimdaranê Zirkîyan o. Zemanê dewleta Merwanîyan de Entax havînge bîyo. Kela Entaxî dewrê Selçuqîyan de reyke destê kurdan ra vejîyaya. Demeyê Usmanîyan de zî destê mîreyêkê kurdan ra kewta destê yewnayî, wina çend rey dest vurnayo. Mîreyanê Zirkîyan ra o tewr peyên Mîr Mehmed Beg bi. Merkezê Licê ra hukim kerdêne. Peyameyê tornanê ey nika "Atalay" o.



Zirkî eşîrêka zaf rewêne ya kurdan a. La zafê kitabanê tarîxî yê bi tirkî de, seba ke tirkî de herfa "q" çin a, çekuya "zirkî" û çekuya "ezraqî/zeraqî" benê têmîyan ra. Rasta xo tu eleqeyê "Zirkî"yan bi "Zeraqî/Ezraqî"yan çin o. Zirkî kurd ê, zaf rewna ra nê cayan de hukim kenê. Zeraqî eşîr nîyê, keyeyêkê şêxan o. Pîlê Zeraqîyan Mûsa wextê dewleta Merwanî ya kurdan de, zemanê Şêx Evdilqadirê Gêlanî de ameyo hetê Mêrdînî. Mekanê ey Sultan Şêxmus, nêzdîyê Mêrdînî de yo. Ma het tornanê ey ra Şêx Hesenê Zeraqî namdar o, mekanê ey dewa Mêrenî ya Hezro ya.

Ma agêrin Xal Emînî û zerencan ser. Ferqêko muhîm mîyanê zerencanê Xal Emînî û zerencanê seydwananê bînan de estbi. Xal Emînî zafê reyan zerencê xo veradayêne teber. Zerencê ey xo rê nat-wet çerayêne. Peynî de bi xo agêrayêne dekewtêne qefesê xo. La yê embazanê bînan wina nêbî. Eke zerencê înan qefes ra bivejîyayêne teber, linga înan girêdaye nêbîyêne, perrayêne şîyêne hey şîyêne. Xal Emînî vatêne, kedîkerdişê zerence sinetêko zaf muhîm o. Her kes heq ra nêno ke zerence tam kedî bikero.

**Senî ke heywano kedîbîyaye hetanî mergê xo înṣanî wa girêdîyeno, înṣanî zî bi no qayde kedî benê û muqtedîran wa girêdîyenê. Ez behsê "perwerde"yî nêkena, ez bi zanayîş vana "kedî". Û ez vana, senî ke kurdî kedîkerdişê zerencan de westa yê, îqtîdarê tirkan zî hende kedîkerdişê înṣanan de westa yo. Sîstemê "devşirme"yîye yê dewrê Usmanîyan sîstemê kedîkerdişê înṣanan o. No sîstem nika bi metodanê neweyan tetbîq beno. Tesîrê kedîkerdişê tirkan texmînan ra zaf zêdeyêr o.**

Kedîkerdişê zerence ganî zereçale ra, hema ke hak de ya, uca ra dest pê bikero. Verê verkan, ganî seydvan yaban ra yew zereçale bivîno. Dima nêdar bo ke zerence key hakanê xo temam kena û ser o qip kewena. Marî ke qip kewte, 24 rojan de leyrçikî hak ra vejîyenê. Rojanê peyênan de ganî seydvan nêzdîyê zereçale de bipawo. Marîya qipe ke vêşanîye ra bêhal kewta, halînê xo caverdana, şina çerena. Leyrçikî zî vera-vera hakê xo qelişnenê û vejînê teber. Senî ke hak ra vejîyayî, hema ke çimê înan anêbîyê, ganî seydvan leyrçikan bigêro dekero pistanê xo. Verê heme çî, boya areqê înṣanî şina zincîya leyrçikan û kedîkerdiş dest pêkeno.

Seydvan çend rojî nê leyrçikan pistanê xo de weye keno. Verî, mêsan qefilneno, sere û baskanê mêse cirakeno, tena gowdeyê mêse pelixneno dekeno fekê leyrçikan. Roja diyinehîrêyine ra pey êdî meliyan qefilneno, sere û baskan cirakeno, pîzeyê melî dekeno fekê înan. Eke bineyke perûşankî bîyî, êdî înan serbest veradano. Mavajîm gama ke seydvan paleyî keno, leyrekî zî derûdormeyê ey de xo rê çerenê. La caran seydvanî ra dûr nêkewenê. Ê seydvanî sey maya xo zanê, belkî sey xuliqnayoxê xo qebul kenê.

Zafê heywanan bi boya areqê înṣanî kedî benê. Çunke areq de zaf tewir kîmya esta. Çimê Yaqûb pêxamberî bîle bi areq weş bîyê. Yûsif pêxamber gomlekê xo Misir ra birayanê xo reyde şaweno welatê Kenanî. Yaqûb saweno çimanê xo ra, çimê ey benê weş. Çend serrî verê cû Misir de doktorêk na mesela ser o xebitîyayo. Îsbat kerdo ke areqê înṣanî de kîmyayê zaf muhîmî estê. Îdîa keno ke çimê Yaqûb pêxamberî bi areq weş bîyê.

Senî ke heywano kedîbîyaye hetanî mergê xo înṣanî wa girêdîyeno, înṣanî zî bi no qayde kedî benê û muqtedîran wa girêdîyenê. Ez behsê "perwerde"yî nêkena, ez bi zanayîş vana "kedî". Û ez vana, senî ke kurdî kedîkerdişê zerencan de westa yê, îqtîdarê tirkan zî hende kedîkerdişê înṣanan de westa yo. Sîstemê "devşirme"yîye yê dewrê Usmanîyan sîstemê kedîkerdişê înṣanan o. No sîstem nika bi metodanê neweyan tetbîq beno. Tesîrê kedîkerdişê tirkan texmînan ra zaf zêdeyêr o.

Mîyanê ma kurdan de panzehîrê kedîbîyayîşî, fehmê kurdperwerîye yo; agêrayîşê bi ziwanê baw û kalan o; milîyetperwerî ya, wayîrvejîyayîşê nasnameyê neteweyî yo.







# Însanî dinya talan kenê

M. Emîn Kaçan

Goreyê cigeyrayoxan ra, destpêkê seserra 20. de, dinya de qasê 20 hezar ziwanî bibyê. Feqet hetanî peynîya seserra 20. panc hezarî ziwanî mendê. Goreyê texmînan ra, hetanî peynîya na seserre (seserra 21.) go qasê 500 ziwanî bimanê. Di sey-hîrê sey serrî badê cû zî go dinya de tena çend ziwanê pîlî bimanê.

Goreyê na rewşe ra, neke tena ziwanî, daristanî, çeşîdê nebatan, çeşîdê heywanan zî roj bi roje bi no lez kemî benê. Gorêyê cigêrayîşan ra, na seserra peyêne de zaf çeşîdê hewnanan û nebatan vindî bîyê û zaf çeşîdî zî binê tehlûkeyê vindîbiyayîşî de yê.

Yewna meselaya girana bîne zî esta la hewce nîyo ke ma dûrî şiyêr. Ma tena biewnîn Kurdistanê Vakûrî ra, bes o. Herema Vakûrî hetê tebîetî wa, roj bi roje ver bi xirabiye şina. Daristanî yan birrîyenê yan zî yenê sotiş. Hêgayî (erd) binê hêrîş û talankerdişê xaniyan û bînayan de manenê. Heywanî yan mirenê yan zî koç benê. Dinyaya xemelnayîya weşike şina, cayê aye de, xanî, bînayê betonî, rayîrê asfaltî virazîyenê û dinyayêka req û rûte manena.

Mintiqaya ma (nabênê Licê, Pasûr û Dara Hênî) verê cû daristan biyo. La eyro hema-hema daristan qedîyayo. Cayê ke daristan mendo zî roj bi roje kemî beno. Cayê daristanî de birr maneno. Xora darê pîlê kevnarî daristan de kok ra nêmendê. Bi çi hawayî daristan roj bi roje kemî beno, aye gore ra heywanê kovî zî benê kemî. Înan ra tayê adapte nêbenê mirenê, tayê zî remenê şinê. Goreyê vatişanê verênan ra, mintiqaya ma de heywanê yabanî yê sey gakovî, pezkovî, xezalî, vîtî (hovîtî), keftarî, xozî, çeqelî, wergî, heşî bibîyê. La eyro kam haydarê nê heywanan o? Ma rojêk yew wergî cayêk bivînin, ma go hewt serrî qal biker. Bapîranê ma zaf qalê nê heywanan kerdê. La eyro çîyo tewr zaf bala mi anceno, teyrê ma yê yabanî (kovî) yê. Da-vîst serrî verê cû, mi bi xo teyrê kê dîbî la eyro çinî yê. Ê teyrê ma yê weşikî se ra şî?

Qismêkê nê teyran beno ke êdî mintiqaya ma de nêmendê yan zî nizdê qedîyayîşî de yê.



Problemê ma yê pîlan ra yew zî hêgayan ser o yo. Hêgayê ke tede ramtiş beno, ma debarê xo û tûtanê xo pê kenê, nê hêgayî roj bi roje binê îstîlaya xanîyan de manenê. Mamosta Roşan Lezgînî, nuşteyêkê xo yê rojnameyê Newepelî de bale antibî na mesela ser. Vatbi Deştê Dîyarbekirî, -deşta derg û dila- heme binê xanîyan de menda. Her kes goreyê sereyê xo banan, rayanê asfaltan virazeno. Xemê kesî nîyo. La tîya ra da-vîst, hîris serrî badê, na deşte de hêgayê ka tede xele bêro ramtiş go nêmano. No qetl o, gune yo!

La ez bawer nîya, tu şaredarîyê Kurdistanî eleqedarîye nîşanê nê nuşteyî û na raştîye daya. Ancî ez bawer nîya ke şêwirmendêk zî na raştîye yew şaredarî ra vata. Mamostayî xo rê va û xo rê vindert.

Eyro neke tena Deşta Dîyarbekirî, vakûrê deşta Mezopotamya, yanî cayê kurdanê vakûrî, pêro no hal de yo. Ma zey mîsalî vaj, merdim Kela Mêrdînî ra ewnîyeno Berrîya Mêrdîn ra, merdim vano na deşte pê qeleme ameya viraştiş û ne peynî ne zî vernîya aye esta, tede kom bi kom xanî ameyê viraştiş û dewî awan bîyê. Ti uca ra şinê Nisêbîn eynî çî vînenê. Uca ra şinê Silopya û halê Deşta Silopîya vînenê, xora adir keweno zerrîya to. Na deşte, Çemê Nerduşî, Çemê Dîcle, Çemê Hêzilî ra heta Koyê Cudî, uca ra hetanî sînorê Kurdistanê Başûrî dewam kena. Hetanî des serrî verê cû zî her çî normal bi. La eyro hal û wezîyet tar û mar o. Pereyê kamî bibîyê, pereyê xo dayê û bi tabîro argoyî, şîyo mîyanê îmanê deşte de xanî viraşto. Ne wayîr esto, ne sermîyan! Çîyo winakî encax dewletanê dinyaya hîrêyine de beno. Gereka xanî binê Koyê Cudî de bivirazîyayê, dewî zî etîya de awan bibayê. Xora, verê cû, dewê Silopîya bi no tewir şên bîyê. Dewê verênî bine Koyê Cudî de yê.

Her kes wa na raştîye bizano. Ma wayîrîye ro welatê xo nêkerin, peynîya ma xirab a. Gereka ma wayîr ro dar û daristananê xo, heywananê kovîyan, hêgayanê xo vejîn. Yan zî dinyayêka req û rûte hêvîya ma ya. Çîyo ke ez tera tersena, go sibaroj de xelayî virazîyê, nêweşîyê bêdermanî peyda bibê û go peynîya peyêne înṣanî înṣanan biwerê. Zey verê Hz. Ademî, go dinya reyna bê înṣanan mahtel bimano.

## Teyrê ke tûtîtîya mi de bibî, nê yê:

1-Bete (m)
2-Bûmo kor (n)
3-Çîrre (m)
4-Dîko awî (n)
5-Dodo, dîkê pêxemberî, dîksilêman (n)
6-Elîlenge, leglege (m)
7-Hejhejike (m)
8-Hîloke (m)
9-Hozer (n)
10-Kançe (m)
11-Kerga awîye, kerga sîya (m)
12-Kevoke (m)
13-Kewzerike (m)
14-Kotere (m)
15-Masegêre (m)
16-Mîrçike (m)
-Mîrçika xanîya (m)
-Mîrçiko ob (n)
-Mîrçika kîmkîlose (m)
-Mîrçika gawanan (m)
-Mîrçika sûre (m)
-Mîrçika zerdike (m)
17-Oxer (n)
18-Paşpaşok (n)
19-Pepûke (m)
20-Qanze (m)
21-Qelencike (m)
22-Qijîne (n)
23-Qiromiro (n)
24-Qîştike, qîştoke (m)
25-Qorbela (m)
26-Quling (n)
27-Reşîla (m)
28-Şewşewike (m)
29-Teyrê helhela, helêla keçele (m)
30-Teyrê baz (n)
31-Tirlî (n)
32-Walwalike (m)
33-Werdeke (m)
34-Xapxapik (n)
35-Zereje (m)



## Seyrangeha Sîlav

Helbet Sîlav û Amêdiye jî wek cêwîka ne. Sîlav seyrangeha sereke ya heremê ye. Sîlav 5 kîlometre dûrî Amedî di quntara Çiyayê Metîn de ye.
Li sîlavê gelek tesîsên nûjen hatine çêkirin ku bi sedan mêvan karin tê de demên xweş derbasbikin. Mehên havînan seyrangeha Sîlav heta derengê şevê ji alî bajariyan ve tê dagirkirin.
Li derdora Sîlavê xwaringeh, otel, daristan, cîhên meş û sporê, sahaya lîstika zarokan, parka seyareyan û gelek tesîsên din jî hene.

# Hêlîna bazan: Amedî

**Welat Baz**

Ev bajarê ku wek hêlîna qertelan li ser girên berze, wargehê bawermendên Bahdîn, hêlîna dîne pak bahînan e. Evder welatê Medan peytexta bahdînan bajarê Amêdiye ye.
Amedî li gor pergala rêvebiriya Kurdistanê qeza ya Dihokê ye. Amêdiye 76 km dûrî Dihokê yê.
Ji Bakûr Colemêrg û Şirnex, li başûr ve Akre û Şêxan, li rojava Zîbar, li rojhilat jî qeza Zaxoyê cîranên Amêdiyê ne.
Amêdiye li ser rûyê cîhanê yek ji deverên bihûştî ye. Erdnîgara heremê wek tabloyekî neqişandî ye. Çiya, ewr, deşt, kanî, çem, daristan, çîçek, fêkî, lawir, balinde hemû cûre zindî û nebat tevî dîrok û cîvanokeke kûr û xurt bûne îmtiyaza însanên heremê.
Zincîrê Çiyayên li Bakûr Metîna li başûr jî Gare Amêdiyê pêça ye. Herdû rexên bajêr ji alî Deşta Sibne û Deşta Zê hatiye pêçan. Bajêr ji deryayê 1400 metre bilind e. Mihemed Evdilayê nivîskarê Amêdiye behsa erdnîgara bajarê xwe dike.
Xaka bajêr li gel çend rûbarên biçûk li rojhilatê Amêdiye Avaşîn û Zê, li rojava jî ji alî rûbarê Xabûr ve tê avdan. Niştecihên Amêdiyê hemû kurd in. Li derûdora bajêr çend gundên asuriyan heye. Di demên kevn de li heremê iihû jî hebûne.
Şêniya bajêr îro di derdora 70 hezarî de ye. Di dema mîrgehê şêniya bajêr ji ya îro zêdetir bûye. Koçberî heye, ji ber cîhê avakirinê nîne. Ji bo enfaliyan xanî avadibin.
Kurdên Amêdiyê bi zaravaya kurmanciya Jorîn û bi devoka bahdînî diaxifin.
Rûniştvanên bajêr bi giştî Misulmanên sunne. Xiristiyanên heremê jî mezheba ortodoks û keldanî ne.

### Rewşenbîrî

Li Amêdiyeye ji bo ku asta rewşenbîrî bê bilindkirin piştî serhildanê di sala 1994'an de nawendeke rewşenbîrî hatiye vekirin. Li vê nawendê gowarên wek Nûjîn û Sîlav tên derxistin.
Herwiha salane rezê semînar û festîwalên Tahsîn Taha û yên folklorê tên lidarxistin.

### Werziş

Li bajêr ji bo gêncan hin projeyên werzişê jî hatine çêkirin. Hola Şehîd Behçet Naîf ku piştî serhildanê hatiye çêkirin, bargeha mezintirîn ya werzişê ye. Ciwanên bajêr di vê holê de zêdetir basketbol û goga destî dilîzin. Ji bo kesên ku tenduristiya xwe miqayetin çend holên fitnesê jî hatine vekirin.

### Minare

Minara Amêdiyê wek kelê yek ji remzên bajêr e. Minare di nav kelehê de hatiye avakirin. Bilindahiya wê 30 metre ye.
Di sala 1576'an de di dema Mîrê Amêdiyê Siltan Hisên de hatiye çêkirin. Di nav minarê de 103 pêlik hene. Li ser dîwarên minarê hin kîtabe hene. Li gel minarê mizgeftekî jî heye. Orjînala vê avahiyê ji ber ku gelek car hatiye tamîrkirin taybetmendiyê xwe wendakiriye.
Di lîmejên îne de ev mizgeft îbadetxaneya nawendî ya bajêr e.

## Dîrok

Amêdiye li gor qeydên kevnare di salên berî zayînê yên 3000'an de bajarek şên bûye. Hingê herem nawenda Gûtiyan bûye.
Piştî ku peytextê Mado Parsan Ekbatan ji alî Mekadoniyan ve tê ruxandin mîratên jibermayî anînê Amêdiye. Di salên b.z 300'an de Avahiya Medya an jî peytexta Medan bûye. Med di dema xanedana Hexamenîşan di nav vê împaratoriyê de yek ji mîrnîşînên otonom bûne.
Îskenderê Makedonî di dema sefera xwe ya ser heremê de hatiye Amêdiyê jî. Navê bajêr li gor belgeyên Asûrî berî zayînê di salên 820'an de Amad an jî Amatî bûye. Amad navê mîrekî vî bajarî ye ku navî li bajêr hatiye danîn. Di dema Îslamê de jî navê bajêr demekî wek Kela Çelab an jî Elbeq bûye.
Amêdî di sala 1862'an de bûye qeza. Bajer hingê bi Mûsilê ve girêdayî bûye.
Di salên dawîn de jî piştî ku Dihok bûye parêzgeh, bi wir ve hatiye giredan. Amêdiye ku peytexta Mîrnîşîna Bahdinan bûye, heta sala 1842'an de bi serê xwe bûye. Di vê salê de tevî mîrgeha Botan ji alî Dewleta Osmanî ve ji holê hatiye rakirin.
Li bajêr di sala 1892'an de jî şaredarî hatiye avakirin. Li gor şaredarê bajêr herçend di warê şarêdariyê de gelek gav hatibin avêtin jî piştî serhildanê jî hin pirsgirêkê Amêdiyê didome.











## Şikefta Enîşkê



Amêdiye bi sirûşta xwe ya bihûştî navdar e. Herem nav dilê Bahdînan navbera Garê û Metînan keviyê Avaşîn û Zapê ye. Balkêşiyeke heremê şikeftê çiyayî ne. Şikefta Enîşkê ku bi hezaran sale ji însanan re mazûvanî kiriye îro jî mazûvaniya xwe didomîne.
Ev şikefta ku perçeyek ji bihûşta Kurdistanê ye, di navbera Amêdiyê û Sersingê de cîh digre. Şikeft di salên 1974'an de wek nexweşxanya peşmergeyan hatiye bikaranîn. Piştî serhildana dawîn êdî wek mêvanxane tê bikaranîn.
Îro di hindirê şikeftê de mêvanxaneyekî hatiyê çêkirin ku tê de xwarin û vexwarinên xweş tên çêkirin.

### Gumbet

Li gel mizgeftê gumbetên Tirba Siltanê Amêdiye jî navdartirîn berhemên kevnare yên Amêdiye ne. Piştî ku Siltan Hisên Amediye û hewsera wî koçî jiyan kirin di tirbeyên hindirê van gumbetan de hatin veşartin.
Her gumbetekî 6 goşe ne. Her yek 3 derî hene. Ser avahiyê bi qubeyên gilover hatine pêçan. Dîwarên ku ji kevirên spî hatine lêkirin, 3 metre bilind in.

**Amedî bi cî û warên xwe yên dîrokî û keleha xwe jî xemleke Kurdistanê ye. Di demekê de jî Amedîye bo Pêşmerge wek nexweşxane hatiye bikaranîn.**

### Keleh

Dema Amêdiye tê gotin keleha bajêr tê bîra mirov. Keleh li ser girekî hatiye damezirandin. Zemîna vî girî tevî dîwarê kelê Amêdiye wek hêlîna qertelan bilind kiriye.
Tê texmînkirin ku bingeha orjînal ya kelehê digîje berî zayînê dema Sasaniyan. Di demên paş de jî keleh gelek car hatiye tamîrkirin.
Dîwarê kelehê 1000 metre dirêjin. Navbera dîwaran jî 500 metre fireh in. Li rojhilatê kelehê bi navê Dergehê Bahdînan, li rojava jî Dergehê Zîbar dû deriyên kelehê hene. Li ser dîwarên deriyê kelehê gelek motîfên cuda hatine nîgarkirin. Herwiha li ser zinnarên nêzî dergeha Behdînan hin motîv û şeklên ola mîhrparêziyê hatine kolan ku ew bawerî yek ji ola herî kevnarê ya Kurdistanê ye.
Li nêzî dergeha Zîbar qesra mîr jî cîh digre. Mîrên bajêr di vê qesrê de jiyane. Beşeke ji avahiyên qesrê îro xerabûne.
Dewrûbera kelehê ji zemîn di navbera 300 heta 1000 pê bilind e.
Dîwarên kelehê ji kevirê reş hatiye avakirin. Piştî dagira osmaniyan di sedsala 17'an de li derdora kelehê jî avahî hatin lêkirin û bajêr hinekî din jî mezintir bû. Îro hindirê kelehê êdî beşeke ji bajêr. Li ber deriyê kelehê em rastî hin bajariyan tên û ew ji behsa jiyana xwe û bajarê xwe dikin.

### Sûk

Sûka Amediyê wek taswîrên kevnare ye. Jiyan û adetên kevnarê û ya nûjen di nav hevûdû de tê xuyakirin. Baharat û zadên daristan û xaka bajêr hem di midfaxê de hem jî di warê tenduristiyê de tên bikaranîn.
Li sûkê yek ji berhemên navdartirîn tahîna Amêdiye. Deşta bajêr bi kunciyên xwe navdarin. Ji kuncî jî tahîna navdar tê çêkirin.
Li gor esnafên bajêr hingiv, gûz û maziyên Amediyê di demên kevn de wek derman hatiye şandin bo Hindistan û Ewropa.
Li bajer hin jî pasajên nûjen nehatine çêkirin. Ji ber vê yekê hin kolanên Amêdiye wek bazar û sûk tên bikaranîn.
Di van kolanan de ji qesaban heta arvanfiroşan ji firna nan heta hesingeran hemû pîşe wek cîranên hevûdû li kêleka hev rêz bûne.
Niştecihên bajêr hemû pêdivî û lazmatiyên xwe li vê kolanê dikarin tedarik bikin.
Pîrekalên Amêdiye behsa demên kevn yê sûka bajêr dike û xweziya xwe bi rojên borî tîne.
Li bajêr yek ji kasibên herî mijûl fêkifiroş e. Xaka Amedî wek depoya fêkîvaniyê ye. Ji ber vê yekê fêkî di xwarina bajêr de cîhekî girîng digrin. Xezaya bajêr ya bihûştî bo hemû cûre fêkî û kiştûkalê destdar e. Fêkîfiroşê Amêdiye behsa nebatên bajarê xwe dike.
Di gera sûkê de em rastî çayxaneyekî tên ku xwediyê wê li bajêr kesekî navdar e. Mêvanên wê çayxanê bi taybetî kesên navsere ne. Apê Evdila ku çayçiyê herî kevn û kesayetiyekî navdar yê Amêdiye ye behsa çîroka karê xwe dike.

### Perwerde

Amêdiye di warê perwerde û rewşenbîriya kurdî de devereke navdar e. Li heremê di demên kevn de 75 medreseyên navdar hebûne.
Ji vana Medreseyên Qûbadxan û Medresa Mela Yehya Mizûrî di mistewa El Ezhera Qahîre yê de bûne. Dibistana yekem ya nûjen di dema osmaniyan di sala 1898'an de hatiye vekirin. Di dema îngilîzan de jî di sala 1928'an de dibistanên sereta hatine vekirin.
Li bajêr û derdorê niha 164 dibistanên sereta û navîn hene. Herwiha peymangeha teknîkî jî di warê kargerî û kompûterê de dû beş vekiriye. Di salên pêşîn de jî li bajêr kolejekî wê were vekirin.

## Di çavkaniyên elmanî de

# Rêberekî kurd ji sedsala 19'an

Mehmet Gültekin

Dewleta Osmanî di nîvê yekem yê sedsala 19 an de, di çarçoveya pêkanîna Tanzîmatê de xwest Mîrektiyên kurdan yên xweser hilweşîne û wan herêman bi rêya waliyên xwe birêve bibe. Ev biryar û hewldana Osmaniyan li gelek herêmên Kurdistanê rastî berxwedanan hat. Artêşa Osmanî pêşiyê êriş bir ser mîrektiyên Bahdînan, Botan, Soran û Herêma Şengalê. Li hember vê êrişê di sala 1834‘an de bi rêberiya Mîr Muhammedê Rewandizî serhildaneke xurt destpêkir û di demeke kurt de ev raperîn bi tevlêbûna gelek mîrektiyên din berfireh bû.
Di vê berxwedanê de kurdan, ên ku girêdayî sîstema mîrektî û eşîrên xwe bûn, li ser bingeha veqetîna ji Osmaniyan avakirina Kurdistaneke serbixwe ji xwe re kirin armanc. Lê belê ev serhildan piştî berxwedaneke du salan bi xwînrijî têkçû û Mîr Muhammed bi soz û peymanan birin Stanbolê. Piştî muzakereyên li Stenbolê dema Mîr Muhammed li ser rêya vegera welêt bû ew xistin dafikê û bi tevî hevalên wî ew kuştin.

Ew serpêhatî û qewimandinên wê demê, bi taybetî jî bûyerên têkbirina berxwedanan ji aliyê hin serbazên Rojavayî ve yên ku di artêşa Osmanî de karmendî û şêwirmendî dikirin, weke bîranîn dihatin nivîsandin. Herwiha gerok û rojnamevanên wê demê jî di derbarê bûyeran de nûçe û şirove nivîsandine û hinekên wan di rojnameyên rojavayî da hatine weşandin. Ev nivîsa li jêr jî ji rojnameyên Didaskalia roja 12.8.1839‘an, ji Der Feierabend ya roja 19.8.1839‘an û ji Bayerische National-Zeitung ya roja 3.9.1839‘an hatine girtin. Ev nûçeyên ku di dema xwe de hatine weşandin me ew ji elmanî vegerandin. Di hersê rojnameyan de jî navê nivîskarê gotarê nehatiye destnişankirin. Lê belê gelek hejmarên rojnameyan yên heman deman, bi sernavên cuda cîh dane nûçe û gotarên di derheqê bûyerên li Kurdistanê de ku wan deman qewimîne.

Ew fermana qirkirinê ya bi armanca hilweşandina mîrektiyên kurdan ji aliyê Reşîd Paşa û Hafiz Paşa ve hatin pêkanîn. Dewleta Osmanî di vê rê de erkeke bêsînor dabû van herdu paşayan. Gelek kilam û destanên kurdî ku îro hêjî tên bilêvkirin encamên wan buyerên bi êş in. Ew helwesta rêberê kurd yê ku di nivîsa vê rojnameyê de tê şirovekirin gelek




dişibe karekterê ku kurd wî di çîrok û destanên xwe de terîf dikin. Nivîsa vê rojnameyê destanên kurdî ên weke pirtûkên Şehname a Firdewzi, pirtûkên di derbarê eyûbiyan de, Seyahetnameya Ewliya Çelebî, Şerefnama Şerefhan û herwiha Mem û Zîn a Ehmedê Xanî jî tînin bîra merivan.

**Berxwedaneke xurt a kurdekî**

Di nav kurdên ku Hafiz Paşa sala çûyî ew têkbirin de, hin kes hebûn xwedî karakterên bêhempa bûn. Beriya çend mehan artêşa Osmanî rêberekî kurd ê gelek bi heybet ku hîn negîhiştibû 30 saliya xwe, dîl girt. Wan heta wê rojê kurdekî ji vî lehengî delaltir ê ku bejn û bala wî evqas lihevhatî, nedîtibûn. Dema ew di konê serfermandar de derxistin pêş Hafiz Paşa, jê re rêz û îhtirameke wisa mezin hat girtin ku ger di dewsa wî de wezîrekî bihata, ewê ewqas bi qedir û hurmet nehata pêşwazîkirin. Hafiz Paşa û qadiyê artêşê ji bo ku ji vî rêberê kurd di derbarê kurdan de agahiyên kêrhatî bigirin, bi hemû hêza xwe bi zareke şirîn gelek soz dane wî. Soz jî têr nekirin, Hafız Paşa di dema axaftina xwe da rabû destê xwe danî ser Qûranê û got: “Ger tu rasterast bersîva pirsên min bidî, ezê te bikim qûmandarê sereke yê alayeke xwe.“

Rêberê kurd jî wiha bersiv daye fermandarê Osmanî: “Tu şaş î paşa, ger tu hêvî dikî ku min jî wek Mîrê Rewandizê bixapînî, ne hewceye, qet neceribîne! Ez ku rêberekî kurdan im, nikarim bibim rêberê kesên din. Tu min bikî qûmandarê sereke yê alayên xwe jî, ezê dîsa berê çeka xwe bizvirînim ser te. Xwedê şahidê min e ku ez ne xayîn im. Niha di derbarê wan pirsên te de jî divê tu bizanibî ku tu ti carî nikarî bersîva wan ji min bistînî. Qederê ez avêtime nav destên te, çi ji te tê keremke bike.“

Piştî kuçwan pêderaniye ku ew nikarin bi gotinên şêrîn ji rêberê kurd agahiyan bigrin, dest bi îşkenceyê kirine. Bi emrê serokerkaniyê ew kirine falaqayê û destpêkirine bi ço 500 carî li bin piyên wî bidin. Ew li ser rûyê xwe li erdê dirêj bûye, darbeyên çoyan her berdewam bûne. Di bin îşkenceyê de kurd ji wan xwestiye ku qelûnekê bidin wî. Dema ku ev daxwaza wî bi cîh anîne, wî serê xwe rakiriye daniye ser destê xwe yê rastê û qelûn wisa kişandiye ku qaşo ew ji lêdanan qet naêşe. Ew herdu mirovên ku li bin lingê wî dixistin, li hember vî zilamê ku ruhê wî nedişkest wisa mat mabûn ku car bi car navber didan îşkenceyê. Ev eziyet du roj li pey hev hatiye berdewamkirin. Roja sisêyan dibînin ku ev kurd naşkê û teslîm nabe, kincên wî jê derdixin, wî tazî rût davêjin nava sîtilêke tijî ava kelandî. Di gel her êziyetî wan nekariye agahiyekê ji devê wî bigrin.

Di dawiyê de Hafiz Paşa bi xwe jê pirs kiriye: “Çima bersîv nadî, tu gotinên min nabihîsî?“

Kurd jî serê xwe rakiriye, bi kîn û rik li dijminê xwe nihêriye û bi dengekî aram gotiye: “Şikir ji Xwedê re guhên min kerr nînin, lê belê li hember pirsên te zarê min wê lal bimîne.“

Li ser vê yekê Qadî ji General pirsiye: “Em wekî din çi îşkenceyan bikarbînin ku em bikaribin ji vî zilamî agahiyan fêrbin?“

Rêberê kurd dema van gotinan dibihîse, bi serbilindî bi ser xwe ve hatiye û gotiye: “Qet îşkenceyek nikare zimanê min veke“

Û pêre jî bi pêçiya xwe ji zilamên li pêşberî wî sekinî destnîşan kiriye û bi berdewamî gotiye: “Ev Kurdê tirsonek ê ku birayên xwe berdaye, bi dijminan re hevkariyê dike û niha jî li ber çavên min sekiniye... bo min ji vê xirabtir hiç îşkenceyek tune!“

Bi van gotinan ew kurdê ku weke “xayîn“ hatiye sûcdarkirin, ewqas şerm dike ku ji nişkê ve çeka xwe ji pişta xwe derdixe, lûleya wê dixe devê xwe û mêjiyê xwe parçe parçe dike.

Rêberê kurd ê berxwedêr û bextreş ku kiribûn nava ava kelandî jî piştî demeke kurt rûhê xwe teslîm dike.

Di hîç demekê de, di ti heyamên berê de, ti kes rastî welatparêziyeke evqas têkûz nehatiye; hiç leşkerek an jî rêberekî yewnanan yan jî romayiyan nikaribûye bi vî awayî li ber xwe bide.



## Pirsa bê bersiv:

# Ezdî kî ne?

Mustafa Turan

Wekî ku ji serenavê vê hevpeyvînê jî diyar dibe, ev pirs di serê gellek kesên ku bi ezdiyan re têkildar bûne de der bûye û dibe. Lê piştî êrîşa DAIŞ’ê ya Şengalê pirsa; ‘Ma dîsa?’ kete serê me û gellek pirsên din xwe bi vê pirsê ve girêdan û êşek zanistî ku nezaniya me li rûyê me dixe xiste serê me. Lewre Arkeolog/Dîroknas’ê Îngilîz Austen Henry Layard’ê ku di navîna sedsala 19. de li Rojhelt a Navîn lêkolînan pêk aniye û şahidiya komkujiya ezdiyan a ku ji alî Dewleta Osmanî ve hatiye pêkanîn kiriye wiha dibêje: “Ezdiyên ku teslîm dibûn jî dihatin kuştin. Ji 4’an 3’yê wan hatin qetilkirin. Di şikeftan de xwe veşartibûn lê piraniya wan ji dûmana agirê ku di devê şkeftan de hatibû dadan fetisîn. Hin ji wan bi topan hatin perçekirin. Du rê dabûn ber wan: Yan wê dev ji ola xwe berdana yan jî wê bihatana qirkirin. Haremên başûrê Tirkiyê bi jinên ezdî hatibûn tijîkirin. Her sal, waliyên osmaniyan bi ser wan de seferan dikirin, jin û mêrên wan dikuştin û zarokên wan jî difirotin. Bi vê mebestê me jî bi Amed Gökçen ê ku, di bin banê Zanîngeha Bîlgî ya Stenbolê de Projeya Xebata Navneteweyî ya bi navê ‘Lêkolîna Pergîhevkirina Çanda Ezdiyan’ bi rêve dibe hevpeyvînekî çêkir.

***Ezdî kî ne û di navbera Ezdayî û kurd an jî kurdîtiyê de pêwendiyeke çawa heye?***

Li gor zanyariyên ku me heta niha bi dest xistiye, meriv dikare beje ku ezdî û kom û civakên din ên olî di çarçoveyeke teng de nikare bêne nirxandin, ger nirxandineke bi vî rengî bê kirin jî, encamên van nirxandinan wê di derbarê danasîna ezdiyan de agahiyên pîr û pak nedin merivan. Lê dîsa jî meriv dikare bibêje ku feraseta ‘Xweda’ ya ezdatîyê û olên din ên semawî bi her awayî wek hev in. Yanî teqez, afirênerê ard û asîman Xweda ye û Xweda yek e. Ev babetên din şayanî lêkolînê ne, lê belê ji ber ku belge û zanyariyên nivîskî yên di derbarê ezdatiyê de pir kêm in û li ser yên heyî jî di derbarê reseniya wan de nîqaş têne kirin û her wiha ji ber ku ezdî li gelek welatan belav bûne, lêkolîna ezdayî an jî ezdatiyê zor û zehmet in. Ji ber vê yekê, ji bo têgihîştina bersiva pirsa ‘Ezdî kî ne?’ û ji bo nirxandineke baş a li ser ola ezdatiyê pir wext û xebat divê. Tenê bi xebatên kûr û berfireh meriv dikare di derbarê ezdatiyê de daneyên rasteqîn û mîsoger bi dest bixe.

***Di derbarê avasaziya olî û civakî ya ezdiyan de tu dikarî me hinekî agahdar bikî?***

Civaka ezdiyan li çînên mezin ên qastên wek “Şêx, Pîr û Murîdan” hatiye dabeşkirin. Di navbera van qastan de derbasbarî tune û ji ber vê yekê di nav kesên ji kastên cûda de zewac nabe. Serokê karûbarên sekuler ‘Mîr’ û yê karûbarê olî jî ‘Şêx’ e. Wek gellek baweriyên din cejn û rojiyên ezdiyan ku li gor welatên cûda dîrokên wan diguherin jî hene. Meriv dikare vê feraseta ezdatiyê di sedsala 12’an de bikoşe. Tê gotin ku Şêx Adî Bîn Misafir ji Lubnanê, lê li gor hin jêderên din jî ji Şamê hatiye Hekarê. Piştî hatina wî civakeke ku navê wê nayê zanîn xwe li dora wî dicivîne û bi navê ezdayî xwe dide nasîn. Lê belê Şêx Adî ne damezirênrê ezdatiyê ye û ne kesekî ku xwedî mîsyona Pêxemberiyê ye. Tenê hewl daye ku baweriya vê civakê hinekî bişibîne baweriya xirîstiyanî û cihûtiyê û bi vê mebestê hin dezgehan damezirandiye. Piştî hatina Şêx Adî, ezdîtiyê xwe ji derve re girtiye û hin tiştên nû yên pîroz ji xwe re afirandiye û kakilê xwe derketiye û hinekî din li derdora xwe belav bûye. Di derbarê Şêx Adî de gellek nîqaş hene. Ev niqaş di nav ezdiyan de, bi taybetî jî di nav ezdiyên Iraqê de bûne sedemê hin pirsgirêkan; Lewre, di gellek çavkaniyan de Şêx Adî wek kesek ‘ereb’ tê danasîn.

***Di nav cihana Îslamê û bi taybetî di nav alema sunne de di derbarê ezdiyan de têgihîneke çewt ku bûye sedemê trajediyên dîrokî û rojane heye. Li ser vê têgihîna çewt tu yê çi bêjî?***

Sedemên vê têgihîn û zanîna çewt bi awayekî zelal li ber çavan in. Yên ku îro ji hovîtiya li Iraqê li dij ezdiyan tê kirin re çavê xwe dişkînin, mazûvanên vê têgihîn û zanîna çewt in jî. Ev kom bi fesadî û reşkirina ol û civaka ezdiyan re mijûl bûn. Bêguman xala ku ezdî herî zêde pê dihatin reşkirin jî ev bû; ‘Ezdayî ji ziryeta Yezîdê kurê Muaviye tên û navê ezdî bi zanebûn guhertin û kirin ‘Yezidî.’ Êdî aşkera tê zanîn ku ezdî tenê ji ber vê têgihîna çewt bi êrîş û dijatiyên dijwar re rû bi rû mane.

***Meriv dikare beje sedeme êrîşa DAIŞ’ê ya taybet dagirtina Şengalê ev feraseta çewt e? Têkiliyeke wisa heye?***

Teqez bi vê ferasetê re têkildar e, ji ber ku hemû zanyariyên gelemper ên di derbarê ezdiyan de, zanyariyên ku di çarçoveya rîwangeya mislimanan an jî ya Îslamîk de hatine afirandin in. Lê belê sedem tenê ev nîne. Di rastî de ezdî bi nezanî, di nav gengeşiya gellek hêz û komên berjewendperest ên rojhelata navîn de man. Ez dibêjim DAIŞ bi taybetî ji bo kuştina ezdiyan nekete Iraqê. DAIŞ ji bo armancek berfireh a siyasî û stratejîk dest bi hewldaneke bi vî rengî kir. Armanca wê ya sereke bidestxistina Mûsilê bû û ji ber vê yekê ezdî ketin ber lingên wan. Li aliye din, ji ber ku DAIŞ ji xwe re eniyên cûda venekir û bi aliyekî ve bi pêş neket, li cihê xwe pal da û qada xwe berfireh kir.

***Di pêvajoya ji destpêka sedsala çûyî yan jî pir pêşdetir heta beriya dagirtina DAIŞ’ê demografiya ezdiyan a li Kurdistan û cîhanê çawa bû û çawa guherî?***

Bêguman meriv dikare li ser sedemên vê nepenîtiya wan şîroveyan bike. Lê belê wek çavkaniyên dîrokî û belgeyan ezdî, di sedsala 12’an de derdikevin ser rûpelên dîroka nivîskî. Di sedsalên borî de meriv dikare bêje hemû gelheya ezdiyan di nav sînorên osmaniyan de bû. Di nav demê de ji ber zext û zora desthilat û civakên cihê, guherînên sînorên dewletan û geşedanên siyasî, li welatên wek Sûrî, Iraq, Gurcistan, Rûsya, Ermenistan, Almanya û hin welatên din belav bûn. Li gel vê yekê, dîsa jî heta beriya êrîşa DAIŞ’ê piraniya ezdiyan li Iraqê, bi taybetî jî li Şengal, Laleş û der û berên van navçeyan dijiyan.

Di destpêka sedsala 20. de û bi taybetî di sala 1915’an de piraniya ezdiyan koçî Ermenistanê kirin. Yên ku debara wan baş bûn çûn Gurcistanê yên dewlemend çûn Rûsyayê. Beşek ezdiyên ku li Sîbîryayê dijîn jî hene. Ev kom di sala 1924’an de beşdarî serhildana ku bi armanca damezirandina Dewleta Kurdistana Sor jî dibe, dûre ew sirgûnî Sîbîryayê dikin. Beşek ezdî jî li Mêrdîn, Hekar, Dîlok, Riha, Amed, Şernex û Batmanê dijîn.





### Şûnwarên pîroz yên ezdiyan li ku derê ne û Şengal ji bo wan tê çi wateyê?

Gellek şûnwarên pîroz yên Ezdiyan hene û Şengal jî ji van şûnwaran yek e. Sedemê grîngîdayîna Şengalê ya Ezdiyan tirbeyên wan ên li Şengalê ne. Ji bilî vê Şengal cihek çolistan e û di warê aborî û civakî de jî ne dewlemend e. Şengal bi taybetî bi tirba Şêx Şems bûye cihekî grîng. Lê bi taybetî Laleşa rûhanî ji bo Ezdiyan cihê herî pîroz ê Ezediyan e.



## Şaristaniya bin erdê:

# Darê

Kalê Badî

Bajarê Dara yê ku heta çend sal berê di bin axê de veşartî bû, bi Serokatiya Midûriyeta Mûzeya Mêrdînê û bi şêwirmendiya Arkeolog Prof. Dr. Metin Ahunbay û bi hevkariya Walîtiya Mêrdînê û Midûriyeta Çand û Tûrîzmê ya Mêrdînê roj bi roj derdikeve ser rûyê erdê û nûwazeyiya xwe ya dîrokî pêşkêşî mirovahiyê dike. Her ku berhemek dîrokî û granbûha derdikeve ser rûyê erdê, hejmara tûrîstên dîrokhez ên ku ji bo berhemên dîrokî bibînin têne herêmê jî zêde dibe. Ev bajarê binaxî yê 30 km li başûr-rojavayê Mêrdînê dikeve, yek ji bajarên qedîm û grîng ê Mezopotamya ye. Bajar, ji alî împaratorê Persî Dara an jî bi navê xwe yê latînî Darîûs ve hatiye avakirin. Lê belê, ji ber ku di serdemên dahatiya piştî avakirina bajêr de, piştî şerên ku di navbera Împaratorê Persî Dara û Îskenderê Mezin ê Romayî de qewimîne û bajêr dest diguherîne, di avasazî û mîmariya vî bajarî de li gel nîşaneyên çand û mîmariya Persiyan, nîşaneyên çand û mîmariya Împaratoriya Roma jî lê hatine nexşîn. Ev bajar di sedsala 7. de ketiye destê Emewiyan, dûre ketiye destê Ebasiyan û di sedsala 15. de jî ketiye destê Osmaniyan.

### Bajar dibe îstgeha tûrîstan

Ev bajarê ku di sedsala 20. de ji % 90'ê wî di bin axê de veşarî bûye û li serê gundek hatiye avakirin, di sala 1986'an de ji nû ve tê vekolan. Piştî van kolanên ku niha jî dom dikin, berhemên pir granbûha ku dikarin bi milyonan tûrîst vekişînin herêmê û bandoreke erênî li aborî û pêşketina civakî ya herêmê bikin, derketin holê. Li ser vê babetê Midûrê Şaxê Midûriyeta Çand û Tûrîzmê ya Bajarê Mêrdînê Îlhan Şik ev agahî dan rojnameya me: "Bi taybetî di van 4-5 salên dawî de hejmara tûrîstên ku têne herêmê û Gundê Darê, roj bi roj





zêdetir dibin. Di sala 2000'an de salê nêzîkî 700 hezar tûrîst ji bo mîrateyên dîrokî yên herêmê bibînin dihatin Mêrdînê, lê îro nêzîkî mîlyonekî tûrîst têne Mêrdînê û piraniya wan heta ku Gundê Darê û vî bajarê dîrokî nebînin venagerin welatên xwe."

### Dixwazin Darê vala bikin

Piştî vekolînên Gundê Darê ku gelek mîrateyên dîrokî derketin ser rûyê erdê, nîqaşên 'Bila ev şûnwar bibe Qada Parastina Nirxên Dîrokî' kete rojeva sazî û gundiyên herêmê. Midûrê Mûzeya Mêrdînê Nîhat Erdogan li ser mijarê da zanîn ji bilî hin aqaran, kar û barên giştîkirina hemû qada bajarê Darê qediya ye û ji bo aqarên ku giştîkirina wan nehatiye kirin jî wê îhaleya plankirina îmarê ya bi armanca parastinê bê kirin. Nîhat Erdogan got: "Eger xebatên me yên li ser vê mijarê bi dawî bin Gundiyên Darê wê ji gund bêne derxistin û li cihekî din bêne bi cihkirin." Erdogan di derbarê ew cihê nû ku wê Gundiyên Darê lê bêne bicihkirin de ti agahî neda. Li ser vê mijarê, Keyayê Gundê Darê Îbrahîm Bilgîç ji BasNûçe'yê re wiha ragihand: "Bi salan e, ji me re tê gotin ku ewê gund bikin Qada Parastina Nirxên Dîrokî, bi vê mebestê ewê ji bo Gundiyên Darê wargeheke nû ava bikin û gundiyan arasteyî wê wargehê bikin. Lê belê ji bo gundiyan ti wargeh ava nekirine û dixwazin gundiyan bi vî halî ji gund derxînin." Îbrahîm Bîlgîç da zanîn ji bo çareseriya vê pirsgirêkê wan serî li hemû sazî û dezgehên têkildar dane, lê belê ti encameke erênî bi dest nexistine. Li ser mijara berzkirina hatina aborî ya Gundê Darê jî Îbrahîm Bîlgîç da zanîn ku li gel ku serlêdanên tûrîstan ên Gundê Darê zêde bûne jî, ti alîkarî nagêhêje wan. Keyayê Gundê Darê Îbrahîm Bîlgîç wiha axivî: "Serdanê hemû şûnwarên Tirkiye yên ku wek Qada Parastinê ya Nirxên Dîrokî hatine pesendkirin bi pere ne, lê belê her çiqas me daxwaz kiribe jî di vê mijarê de dezgehên fermî ti amadekarî nekirine. Ji bo tuwalêt û çend tesîsên bêhndanê bêne lêkirin me serî li Şaredariya Mêrdînê jî da. Lê belê, ji ber ku wek fermî şaredarî ne rayedar e ev daxwazên me pêk nehatin. Li gund tenê çend çayxaneyên ku gundiyan bi derfetên xwe vekirine hene û zarokên gund ji tûrîstan re rehbertî dikin. Ji vî bajarê qedîm ku bi sedhezaran tûrîst serdana wî dikin, tenê ev hatina biçûk digihîje gundiyan." Îbrahîm Bîlgîç ji Wezareta Çand û Tûrîzmê, ji Walîtiya Mêrdînê û ji hemû dezgehên ku bi vê mijarê re têkildar in daxwaz kir ku pirsgirêkên gundiyan li ber çavavn bigirin û bila serdanên bajarê Dara'yê bi pere bin û ew pere jî ji bo binesazî û pêdiviyên din ên Gundê Darê bêne xerckirin.

### Mîrateyeke pir mezin e

Li Gundê Darê, di derbarê mîrateyên dîrokî yên ku piştî vekolînan derketine ser rûyê axê de jî Midûrê Mûzeya Mêrdînê Nîhat Erdogan ev agahî dan: "Piştî vekolînên ku di sala 1986'an de destpê kirin, goristaneke ku her gorek wê wek qubalok di zinaran de hatine vedan, mahzenek ku ji sê depoyên mezin ên ku pêdiviya ava bajar bi cih tîne, 3 sarinc ku wek zindan jî hatine bikaranîn derketine holê. Ev her sê sarinc jî hatine paqijkirin, restorasyona sarincekî qediya ye û restorasyona du sarincên din jî dom dikin." Midûrê Mûzeya Mêrdînê Nîhat Erdogan da zanîn ku ew sê sarincên ku derketine holê dişibin sarincên Qesra Yerebatan a li Stenbolê û got: "Em payîn dikin ku li vê derê hin sarincên din jî hene û ger ku hebin wê di vekolînan de derkevin holê."

Bêguman mîrateyên dîrokî yên ku ji bin erdê Gundê Darê derketine tenê ev nîn in. Malokên ku di zinaran de qat qat hatine vedan, birca du derî ku bajêr çaralî dorpêç dike, du kele, dêr, qesir, sûka ku du aliyên wê dukkan hatine rêzkirin, zindan, topxane û gellek mozaîkên giranbûha çend mîrateyên mezin ên ku ji vê axê derketine ser rûyê erdê ne. Ji van berheman û pere û polikên zîvîn yên ku li her aliyê gund ji bin erdê dipijiqin, meriv têdigihîje ku ev bajar di dema xwe de navendeke mezin a bazirganî û danûstendinê bûye.



## Berê kesî nediwêrî raftîng bike

Antrenor Nazım Arslan li ser tirsê wiha dibêje: ''Di serî de ne tenê însanên ji bajarên dûr ên Tirkiyeyê însanên me yên li Elezîz û Erzîncanên jî newêribûn bihatana lê paşê hêdî hêdî rewş guherî. Niha tên li vê derê, di nav dar û dehlan de di çadiran de dimînin. Tirs çiqas kêm be ewqas baş e lê tu bikî nekî jî tirs û talûke li ser raftînga



me jî heye. Her der roj bi roj hiş û biring dibe, av kêm dibe, ew dezavantajek e ji bo raftîngê. Zinarên ku par û pêrar em em du bostan jor di ser wan re diçûn îsal ji ber ava ku kêm dibe em di ber re diçin, meriv bibêje bihêjmêre derd naqedin lê em tiştên heyî yên pozîtîf bêjin. Werin Dêrsimê werin kêf û seyranê, werin raftîngê. Bajarên din ji we re deriyên xwe vedikin lê ê me em derî û çiya û çemên xwe tev vedikin"

# Raftîng li çemê Mûnzûrê

O.F. Baran

Çemê Mûnzir yê ku demeke dirêj şahidê xwîna dirijiya bû xwîna li ser xwe hêdî hêdî dişo û mîna zemanên xwe yên berê dîsa hevaltiyeke dûrî çav û nezeran bi ava xwe ya zil û zelal re datîne. Ev çend sal in bi xêra kêfa raftînga li ser çêm, ku hema çend kêliyên tik î tenê bin jî bîranînên xerab û bi xem ên çêm yên tije-şer ji bîra çêm çem û çem diçin. Bi qasî çêm niştecîhên Dêrsimê jî ji vê yekê razî ne, yên ku bi raftîngê çend quriş pere qezenc kirine jî hene yên ku pê aramî û aştiya li bajêr îspat kirine jî. Nazım Arslan ê ku di pêşbaziyên li Tirkiyeyê de çend caran xelat wergirtine û vegeriyaye cih û warê xwe Munzur Rafting ava kiriye her çiqas niha bi karê xwe qayil e jî diyar dike ku di serî de ji ber şerê li herêmê tirs û qisawetên wî yên bi rastî tirs û qisawet bûne hebûne. Di van çend mehên vê dawiyê de çem û însanên li herêmê pariyek be jî ji tirs û xofa şer dûr ketine. Turîstên ku tênê Dêrsimê û niştecîhên bajêr bi xwe hema bêje li her derê herêmê dikarin çadirên xwe vegirin û di çêm de ji xwe re bi kêfa dilê xwe avjenî û raftîng bikin lêb bes ew îcar jî ji bo çêm ketine ber tirs û xofa santralên hîdroelektrîk. Plan û projeyên santralan û bendavan ji ber ku ava heyî kêm dikin rê li ber raftîngê digrin. Antrenorên raftîngê dibên me ne lazim raftîng maftîng lê em li ser çemê xwe santral mantralên hîdroelektrîk mîdroelektrîk naxwazin.



### Niha çar parkur hene

Raftîng bi kelekên ku navê wan ''raft'' in bêhtir li çemên ku der û girên wan ên bilind heye tê kirin. Di vê sporê de mesele û estetîk ew e ku raft li zinaran neqelibe û nequlibe noqî avê jî nebe. Di her grupeke raftîngê de 6 an jî 8 kes hene. Ji bo





serkeftinê grubê divê kesên di grubê de wek ku tev şexsekî tenê bin bifikirin û bilivin. Li gor astengiyên li ser çêm, yanî li gor zorbûna parkuran di vê sporê de ji 1ê heta 6an şeş derece hene. A herî zor dereceya 6an e û ya herî hêsan jî dereceya 1ê. Li Mûnzirê di dereceyên cûda de çar parkur hene.

### Raftîng nabe kelekîng

Yên ku tên var parkuran raftîngê dikin car caran bi rastî car caran jî bi qerf û henek û tinazî navekî kurdî ji raftîngê re digerin. Antrenorên ku bi kurmancî û dimilkî diaxivin her çiqas serê xwe pir pê re êşandine jî heta niha tiştekî ku li dilê çêm û ferhangan rûne nedîtine. Tê gotin yên ku sirf seba ku nebên raftîng dibêjin kelekîng jî hene, lê ev peyva, yanî ev ecêba li ser ecêban li gor gelek zimanzanan - ku li welêt gelek in - ne li sêr çêm ne jî li ser zimanan wê tu carî nikaribe ji xwe re ciyekî çêke.

### Xerb û şerq û raftîng

Dêrsim, bajarê ku bi festîvala xwe ya xweza û çandê nav û dengê wî derketiye her sal di havînê de ji bi deh-hezeran însanên ku ji welatên nêzîk û dûr tên re mazubaniyê dike. Însanên ku bajêr bêhtir wek bajarekî herêma şerî nas dikin piştî ger û geşta çend rojan eynî hevokê li lêvên xwe dixînin: ''Ev der ne Şerq e Xerb e!'' Raftînga li Dêrsimê dike ku ew hevoka ku li lêvên însanan dikeve bêhtir bi hêz û quwet be. Nazim Arslan li ser vê hevokê û hal û hikeyata raftîngê wiha diaxive: ''Berî ez qirara Munzur Raftingê bidim, ji xwe ev bûbû çend sal ku min li deverên din raftîng dikir. Da ku em bajarê xwe temsîl bikin li Tirkiyeyê ez û hevalên xwe em diçûne pêşbaziyan. Carê em bûne 4em carê jî 5êm. Me xwe xwe ji xwe re go 'ava xelkê bi qasî ya me ne zêde ye û çemê wan jî bi qasî ya me ne xweş e, çawa bêjim ne herikbar e, çima em li ser çemê xwe raftîngê nakin?', li ser vê pirsê û qehrê em hatin bajarê xwe û me zend û bendên xwe badan. Bes problemek hebû, li derên em diçûnê ji xwe berê turîst hebûn, raftîng paşê ji bo wan tûrîstan hebû lê ê me herdu jî tune bûn. Me got em bikin an nekin, me got em bikin an nekin û me hew dît em li ser çêm in û turîst jî yek bi yek li vir zêde bûn"

# Teorî bi kurdî xweş e

Mijdîn Memdûh

Rewşa Wêşangeriya Kurdî 6

Di derbarê pirsgirêkên weşangeriya kurdî de ji wêşanxaneyên kurdî her yek li gorî xwe tiştêkî û lezginiyekê nîşan dide. Tişta hevpar ew e ku sazî, şaredarî û dezgeyên kurdan alikariya qada wêşanê nakin û bo çaresereyek mayînde ku rêyeke bi derfet li ber weşanxaneyan vebe xebatekê nadin meşandin. Dosyaya me ya 'Rewşa Wêşangeriya Kurdî' vê hefte bi weşanxaneya Peywendê didome. Yek ji xwedî û edîtorên Peywendê Davut Özalp pirsên me bersivandin







***Weşangeriya kurdî, tevî ku hêjmara wêşanxaneyan zêdetir bûye û hin derfet ji berê baştir in ji niha di çi halî de ye?***

Weşangeriya kurdî, bi zêdebûna weşanxaneyan re her ber bi başbûnekê ve diçe û dema ku mirov li pirtûkên ku di nava salekê de hatêne çapkirin dinêre, hem wek hejmar hem jî di hêla pirrengiya berheman û beşdarbûna navên nû de, rewşeke erênî heye. Li gorî çend sal berî niha ji bo xwendevanên kurdî êdî alternatîf zêdetir bûne û hindik be jî îmkana hilbijartina berhemên baştir derketiye holê.

***Xwendina pirtûkên kurdî li çi astê ye? Firotina pirtûkan têrî xwe fînansebûna wêşanxaneyan dike an na?***

Me di bersiva pirsa jorê de behsa pêşketin û geşedanekê kir di warê weşangerî û zêdebûna berheman de. Lê dema ku mesele tê ser zêdebûna rêjeya xwendina bi kurdî, mixabin ku mirov nikare heman tiştî bibêje. Lewra hê jî berhemeke kurdî ya herî baş, kîjan weşanxane dibe bila bibe, di salekê de ji hezar hebî zêdetir nayê firotin. Ev yek jî rewşeke nakok derdixe meydanê ku mirov dikare bibêje nivîskar û nivîs zêde dibin lê belê xwendevan zêde nabin, an jî rêjeyeke pir kêm zêde dibin... Digel ku di çend salên dawîn de hin beşên kurdolojiyan jî li zanîngehan vebûne, di navbera salên borî û niha de zêde ferqek berbiçav naxuye. Li vir eger em werin meseleya fînansê, ê me bi xwe mixabin ku em nikarin bibêjin weşanxaneya me bi firotina pirtûkan xwe fînanse dike. Lê dîmena heyî nîşanî me dide ku hê tu weşanxaneyek nikare bi pirtûkên kurdî ku difroşe xwe fînanse bike.

***Di warê belavkirin û bazarê de pirsgirêkên ku wêşanxaneyên kurdî rû bi rû ne hene an çi ne?***

Mijara belavkirina berhemên kurdî û li bazarê danxuyakirina wan, pirsgirêka herî mezin û sereke ye. Mixabin ku di vî warî de hê tu sazî yan şîrketeke tenê berhemên kurdan û kurdî belav bike nîne... Her weşanxane bi îmkanên xwe berhemên xwe dide belavkirin. Û belkî çend weşanxaneyên mezin bi hin şîrketên belavkirinê yên tirkan didin belavkirin, lê wek ku bala her kesekî dikişîne mirov li tu pirtûkfiroşekî mezin, li ser refan rastî tu berhemên kurdî nayê. Bi me problema herî mezin vê gavê ev e.

***Xwînêrên kurd zêdetir çi dixwînin? (Wêje, felsefe, dîrok, civaknasî, psîkolojî hwd.)***

Wekî ku me di bersiveke jorê de got, ji ber ku em weşanxaneyeke nû ne, ji bo me belkî bersivdana vê pirsê hê zû ye, çimkî me hê di wan waran gelekan de berhem çap nekirine... Digel vê rewşê em dikarin bersivek wiha bidin, li bal me herî zêde pirtûkên teorîk balê dikişînin...

***Sazî û partiyên kurdan, şaredarî û dezgehên din û nêzikahiya wan a li hemberî weşangeriya kurdî çawa ye?***

P Vê gavê saleke em karê weşangeriyê dikin, ne erênî û ne jî neyênî heta niha me tu nêzikahî nedîtiye ji tu saziyê. Ji bo vê pirsê belkî hê zû ye em nirxandinekê bikin. Me jî hê bi têra xwe weşanxaneya xwe bi saziyên navborî nedaye nasîn û em bi kesekî re neketine nava danûstendineke taybet. Eger em li derveyî xwe ji bo giştî çend gotinan bikin, piştî vê qanûna ku demek berî niha derket û rayeyên şaredariyan hê zêdetir kir û her wisa armanc û programa ku tevgera kurd ya Bakur daye ber xwe, êdî divê di navbera rêveberiyên herêmî û weşanxaneyan de têkiliyek hebe. Ne tenê di nav kurdan de li hemû welatên pêşketî ev karên wiha tenê nikarin bi îmkanên xwe bimeşin. Lewre jî fînans û gelek tiştên din lazim in.

***Di navbera wêşanxaneyan de têkiliyek heye, li hemberî pirsgirêkan mildayînek hevpar heye?***

Wekî kes an şexis, di navbera hemû weşanxaneyan de kêm-zêde danûstendin heye, lê bi awayê sazitî mixabin tiştek wisa tune ye. Esasen nebûna wan hemû tiştan heta niha normal bû lewra ev karana nû tênekirin. Ya mûhîm ji niha şûn de ye. Di Fûara Pirtûkan a 2014an ya Amedê de, piştî fûarê em li Amedê ji bo nîqaşkirina vê meseleyê li hev civiyan, lê ji nebûna demê encamek jî derneket. Her kes yekitî, yan organîsazyoneke wiha hewce dibîne êdî.. Belkî payîzê ev mijar cardin werin rojevê.

***Li gor we astengiya sereke ya li ber wêşangeriya kurdî çi ye?***

Kêmbûna xwendevanên kurdî ye. Em dibêjin eger rêjeya xwendinê zêde bibe, gelek pirsgirêkên din wê çareser bibin. Em tim behsa kêmbûna xwendevanan dikin, di vir de ez dixwazim çend tiştan bibêjim ku bila mesele şaş neyê fêmkirin. Mesela nebûna xwendevanan ne meseleyeke wisa basît e ku em bibêjin kurd naxwînin! Meseleyeke kûr e, zimanekî ku ji dibistana seretayî heta zanîngehê nebibe zimanê perwerdehiyê wê çawa bibe zimanê xwendinê? Her wisa zimanekî ku nebibe zimanê rêveberî û desthilatdariyê wê çawa xwendevanên wî hebin? Bi kurtasî çareseriya bingehîn ya vê meseleyê girêdayî çareseriya pirsgirêka kurd e.

***Pêşniyazên we çi ne di derbarê xwênêr û saziyên din yên kurdan de û ji bo wêşanxaneyên din?***

Ji bo xwendevanan pêşniyaza me bihistiyarîbûn û beşdarîbûn e, ango xwendevanên jîr dikarin zorê bidin weşanxaneyan û nivîskaran ku ew berheminên xweşiktir derxînin. Ji bo saziyên kurdan tiştên ku bêne gotin pir in, bi baweriya me ziman ji bo kurdan her tişt e û ji her tiştî biqîmettir e. Lewra danjiyandin û pêşxisitana vî zimanî barê stûyê me tevan e. Heçî mijara weşanxaneyan e, em dikarin bibêjin êdî dem hatiye divê di navbera me de danûstendineke xurttir hebe, ew dikare yekitiyeke weşanxaneyan be, dikare tiştek din be, lê ya muhîm hebûna oragnîzasyonekê ye.

***Di derbarê wêşanxaneya we de agahî: Kêngê hat avakirin, li ku weşanê dike, heya niha çend pirtûk çap bûne?***

Weşanxaneya Peywendê di havîna 2013an de, ji hêla komek hezkiriyên kurdî ve hate avakirin û payîza heman salê de jî dest bi çapkirina pirtûkan kir. Bi fermî navend Stenbol e, lê ji ber ku weşanxaneyeke pirhevpar e, em dikarin bibêjin xebatên wê bi giştî li du navendan têne meşandin; Mêrdîn û Stenbol. Heta a niha bi giştî 15 pirtûkên me li piyayeseyê ne û halîhazir çend jî li ber çapê ne. Armanca bingehîn a avakirina Peywendê, destekkirina berhemên baş ên telîf û werger yên kurdî ye.



## Dr. Rodî Demirkapı

# Xwekuştina koçeriyê

O. F. Baran

Li gor hukmên dîrokê, yên ku dîrok ji duh rakirine anîne heta îro û dîsa li gor fikrên hin nivîskarên xwe nekuştine, xwekuştin di hundirê xwe de serhildanekê dihewîne ku ji aliyê jiyanê ve nikare bê sekinandin. Weke mînak, Albert Camus yê ku 'absurd'ekê li her tiştî dike yanî her tiştî bêwate dibîne, dema gotin tê ser ser xwekuştinê, dibêje ''Xwekuştin û huner li ser eynî kokê şîn dibin, herdu jî serhildan in'' Helbet li pey vê gotinê meriv dikare xweş bibêje ên ku bi vê hunera serhildanê re bêhtir serê xwe diêşînin bêhtir hunermend û nivîsakar bi xwe ne. Mîna Stefan Zweig û Lotte Zweig ên ku xwe tev dikujin, mîna Walter Benjamin, mîna Şikoyê Hesen, mîna Virginia Woolf û mîna Dr. Rodî Demirkapı yê ku bi hesreta welêt û azadiyê, di sala 2001'an de li Elmanyayê li bajarê Kolnê xwe dikuje.





## Dermanê Rodî: Helbest

Dr. Rodî bi zimanekî sade gelek helbest nivîsandine û hinekê wan di kasetan de xwendine. Îro çend qeydên ji van kasetan de hê jî li ser înternetê peyda dibin. Di nav helbestên wî de yê herî bi nav û deng "Baz û Tolaz" e, di vê helbestê de Dr. Rodî bi kurmanciya reş li ser biratiya qaşo ya "tirko"diyalogekê vedibêje: "... li ajotin û çinîna erdan, wexta avdana mêrgan û zeviyan, ta ku me anî bêderê, em bira ne tev van kurê kerê, piştî ku em bêderê radikin, em dibên bira de were em par bikin, ku em dest bavên çapê, dibên nas nakim hûn in kurê kê, sîz kîmsînîz ûlan, me dixapîne bi derewan û bi viran, roja heq û hiqûq ew biratiya holê dibe ya guran..."

Helbestên Dr. Rodî di sala 1996'an de weke pirtûk hatiye çap kirin lê ew çapa tenê li Ewropayê hatiye belavkirin.

**Koçerek tê dinê, dixwîne**

Bi navê xwe yê ewil Hacî di sala 1945'an de li Paloyê, li gundê Kirvanê ji dayik dibe. Hacî û malbata wî koçer in, Bêrtî ne. Heta heft saliya xwe, Hacî jî bi malbata xwe re jiyana koçberiyê dijî. Paşê li gundê ku ji ber guherînên îdarî îro bûye Kovancilar dest bi mektebê dike. Mamosteyên ku jîrbûna wî zû ferq dikin tim ji bavê wî Evdillahê Qantozî dixwazin ku kurê xwe bide xwendin. Bavê wî guh dide mamosteyan û kurê xwe Hacî dişîne dibistanê. Piştî xwendinên li Diyarbekir û Elezîzê, Hacî mamostetiya matematîkê qezenc dike lê naçe xwe qeyd nake. Saleke din dimîne û îcar jî li Erziromê fakulteya tipê qezenc dike. Di nav Bêrtiyan de xortê ewil ku ''dixtorî'' qezenc kiriye ew e.

**Rodî Demirkapı ku wek zarokê malbateke koçer tê dinê, li zanîngehê gelek caran rastî êrîşên nijadperest tê lê bi israr xwendina xwe didomîne û dibe bijîşk**

**Zanîngeh û Enqere û Erzirom**

Ji ber ku zanîngeha li Erziromê hê ji bo perwerdehiyê ne hazir e Hacî li Enqereyê salekê li Zanîngeha Hacettepeyê dixwîne. Paşê dîsa vedigere Erziromê. Him li Enqereyê him li Erziromê, Hacî ti carî kurdbûna xwe venaşêre, berovajiyê veşartinê vê yekê wek nîşaneke serbilindiyê dibêje. Komên nijadperest li zanîngehê gelek caran êrîşê wî dikin ku pê zanîngehê biterikîne û dev ji xwendinê berde. Lê Hacî zanîngehê bi dereceyeke baş diqedîne.

**Doktorê gelê xwe**

Hacî bi rêya dadgehê navê xwe diguherîne û lê dike Rodî. Di demeke kin de ew li aliyê Kanîreşê, Çewligê, Elezîzê baş tê naskirin û pir tê hezkirin. Wî ji nexweşên feqîr û xizan pere nedigirt û şîretên kurdperweriyê li mirovan dikir. Lewma hêzên dewletê û derdorên neteweperst ew li herderê dişopandin, gef lê dixwarin û nerazîbûna xwe zû nîşanî wî didan. Li ser gefên ku jiyana wî dixin xeterê Dr. Rodî berê muayenexaneya xwe ya li Çewligê diterikîne diçe yeka nu li Kanîreşê vedike, paşê wê derê jî diterikîne diçe li Kowancilarê li navçeya Elezîzê muayenexaneyekê vedike.

**Siyaset û dîsa êrîş**

Di salên 90'î de siyaseta kurdan êdî ji xwe re çareseriyekê digere û di vê lêgerînê de Halkın Emek Partisi (Partiya Keda Gel) tê hawara kurdan. Dr. Rodî jî yek ji wan damezirînên vê partiyê ye, li Kowancilarê dibe serokê partiyê. Piştî gefên li ser telefon û li ber mal û muayenexaneya wî di sala 1992'an de ew û kurê xwe Şûrzan rastî êrîşeke kontrayî tên. Di vê bûyerê de Şûrzan li pêş çavên bavê xwe tê kuştin. Dr. Rodî yê ku bi pênc guleyan sax difilite di sala 1993'yan de berê xwe dide Ewropayê.

**Siyasetmedar û helbestvan Demirkapı, li sirguniyê, li Ewropa bi kesereke kûr dijî. Koçeriya bi zorê li wir wî ditengijîne û jiyan weke tîremarekî li stûyê wî dişide.**

**"Hebûn mûtlaq e"**

Piştî kitêba helbestan, Dr. Rodî di sala 1999'an de li ser felsefeyê jî kitêbeke derdixîne. Navê kitêbê ''Hebûn Mûtlaq e'' Ev pirtûk jî tenê li Ewropayê hatiye belavkirin, li Kurdistanê peyda nabe. Ji wê pirtûka felsefî çend gotin ev in: ''Tunebûna tiştekê, hebûna wî tiştî bi xwe ye'', ''Heq rastî bi xwe ye û riya rast mirovan digihîne menzîla Heq'', ''Her tişt berevajiya xwe nîşan dide û dide zanîn''

**Koçerek koç dike**

Dr. Rodî ji penaberiya li Ewropa pir diêşe û dixwaze vê êşê di bin hukmê xwe xe û têk bibe. Berê bi destên xwe ji zaroyên xwe, xizmên xwe û welatê xwe re nameyan dinivsîne û paşê dîsa bi wan destan bi huner û helbesta serhildanê, li Kolna Elmanyayê di 9'ê Gulana 2001'an de kindirê qirika xwe diavêje ser guliyê darê û xwe berî xwarê dide.

## Rêwitiya malbata Leyla Xan ya ber bi Ewropayê ve û muzîk



Ez bi xwe li Wêranşarê ji dayîk bûm. Bavê min ji Dêrika Çiyayê Mazî ye, diya min ji Sêwregê ye. Ez her çiqas li Wêranşarê bibim jî li Almanyayê mezin bûm. Jiyana me ya Almanyayê bi zor û zehmetiyan tije bû, me nedigot em êdî ketine nava rehetiyê li kêfa xwe binêrin. Ez zarokbûm min digot em kîne, ji ku hatine, çima li mal bi kurdî li derve bi tirkî diaxivin? Min ev pirs ji dayîk û bavê xwe dikirin. Bavê minê ku min gelek tişt ji wî girtine, ji min re digot ku em kurd in.

Rojekê mamosteyekî min di dibistanê de ji min pirskir, got Leyla tu ji ku yî? Min got ez kurd im. Got kurd çiye? Min got em ji Tirkiyeyê ne lê em kurd in. Lêkolînkir û got: "Bi xêra te ez hîn bûm ku kurd kîne." Bavê min tim digot sê zarên min hene lê ez dixwazim zarokekî/ê min bibe hunermendê gelê xwe lê ne wisa hunermendek hêsan. Bavê min, xwîşk û birayê min jî li tembûrê dixistin. Di şahiyan de bavê min helbest dinivisand û min jî li ser dikê dixwendin. Min her dem di nava koman de stran digot û di nav van koman de perwerde didît. Di zarokatiyê de mûzîk ket dilê min. Di dawîyê de min biryar da ku ez albûmekê derbixim.

# Leyla Xan:
# Sirrên ku bi stranan didin der

**Aziz Tekin**

Leyla Xan li Wêranşarê ji dayîk dibe, piştî çend salan tevî malbata xwe berê xwe dide koçberiyê û li elmanya bicîh dibe. Eleqe ya wê ya bi muzîkê re li vir, li xerîbiyê peyda dibe. Di şev û şahiyên kurdên li Elmanya de derdikeve ser dikê û stranên tijî keser û rondik distrê. Her ku diçe karê xwe ber bi profesyoneliyê ve dibe û pişt re di nava gelek komên muzîkê de cîh digire. Piştî demeke ji xebatên muzîkê xemilî albûma xwe ya bi navê 'Stranên Dilê Min' amade dike. Piştî vê jî berê xwe dide Stenbolê û bo danasîna xebatên xwe û çêkirina bernameyeke muzîkê bo kanaleke televizyonê, li vir bi cîh dibe.

Leyla Xan di derbarê muzîk û jiyana xwe de pirsên me mersivandin.

**Stranbêj Leyla Xan piştî salên dirêj vegeriya Tirkiye û niha di televizyonekê de bernameyekê çêdike. Li aliyê din jî xebatên xwe yên muzîkê didomîne. Albûma xwe ya ewil bi eleqeyek balkêş hat pêşwazîkirin.**

***Tu wek jinek û hunermendek kurd di warê hunerê de rastî çi astengiyan têyî?***

Pêşiyên me dibêjin şêr şêr e çi jin çi mêr e. Bi rastî jî her jineke me wek şêran e. Di warê astengiyan de ku malbat astengî derxe pêşî li jinê tê girtin, bêyî wê, ji bo jinan astengiyeke zêde tine. Biryar dibê ya jinê be. Min wek jineke du sal û nîv wext da albûma xwe. Ev qedr û qîmeteke mezin e, ji ber ku bi kedeke mezin derdikeve, weke çêbûna zarokan e. Hemû hest di wan de weşartî ne.

***Tu rewşa mûzîka kurdî ya îroyîn çawa dibînî?***

Di van demên dawî de gelek hunermendên serkeftî derdikevin lê huner ti caran karê sekanê nîne. Li Başûr tarzeke gelek arabesk heye. Divê dev ji vêya berdin û vegerin ser koka xwe, ser bingeha kurdî. Stranên gelêrî jî bi arabeskî dixwînin. Ev derdor dibin heyranên hin kesên wisa ku di karên wan de huner tine. Kurdên me yên gelek serkeftî hene, lê li wan guhdarî nakin. Li Bakûr pêşketin heye lê hîn jî ne di wê asteyê de ye ku mirov jê razî be yan jî jê kêfxweş be.

***Navê albûma te ya nu 'Stranên Dilê Min e'. Tu dikarî behsa xebat û serboriya derxistina vê albûma xwe bikî?***

Beriya albûmê ez di nava koman de bûm. Gelek kesan xwest ku ez bi tirkî albûmê çêkim lê min qebûl nekir. Min dixwest hestên xwe bi kurdî bidim der. Demeke dirêj albûm derxistin di dilê min de rûnenişt. Di dawiyê de mamoste Şivan (Perwer) çend sal berê got: "Leylê ka were em albûmek ji te re çêbikin, di te de tiştek heye." Min xwe amade hîs nedikir. Çend sal paşê dîsa got lê min dîsa qebûl nekir. Sê sal berê îjar min gote wî; mamoste tu dixwazî hê alîkariya min bikî. Wî jî qebûl kir. Mamoste ji bo min deriyekî rast bû ku ez pê re bixebitim. Piştî albûm derket hate ecibandin. Di warê nasandinê de hin kêmasiyên me hebûn lê li hember vê kêmasiyên gihîşt gelek kesan û hat ecibandin jî. Stranên Dilê Min; dema me repertûar amade dikir gelek stran hebûn, lê min stranên ku di dilê min de cîh girtibûn xwendin. Navê Albûmê jî ji wê derê tê. Di dema amadekirina albûmê de produktor Hakan Akay jî gelek alîkarî da me, kedeke wî ya mezin heye.

***Tarz û stîla te li ser mûzîka gelêrî ya kurdî ye, sedemeke vê ya taybetî heye gelo?***

Stranên ku li dengê min tên ez dixim repertûara xwe. Ji ber ku albûma min ya yekem bû îmzeya mamoste Şivan hebû min xwest tarzeke gelêrî be. Dibe ku di pêşerojê de tarzên din jî biceribînim. Mesela min strana Hesenîko û Asê ya dengbêjî bi tarzeke lawjenî xwend.

***Hûn di straneke de bi Şivan Perwer re dûetê dikin û gotinên çend stranên din jî ji aliyê Şivan Perwer ve û hatine nivîsandin. Bi staranbêjên wiha bi nav û deng re xebat çawa ye?***

Mamoste hemû tîp û herf kontrol dikir û yê nebibû qebûl nedikir, deh caran bi min dida dubarekirin. Ez biçûkbûm lê min ji dengê mamoste Şivan, Meyrem Xan, Eyşe Şan, Mihemed Arif û Hesen Cizrawî gelek hezdikir. Weke bi milyonan ez jî bi dengê mamoste mezin bûm. Bibar Baranê ji aliyê Gulistan Perwer ve hatibû xwendin. Di albûma min de 6 stran, yan yên mamoste ne yan jî berhevkariya wan kirî ye. Helbet xebata bi mamoste re şansekî mezin e. Naveroka hin stranan di jiyana mamoste de hatine jiyîn, wek Cewdik. Cewdik berê li avê dixistin postê heywana bo sar bibe. Bi avê re ev post dinepixî. Kurikekî hebûye di dema dibistanê de evînadarê keçikeke bedew bûye. Hevalên wî pê henek kirine; gotine kuro tu wek cewdik î, ev keç evînadarê te nabe. Bi vî awayî ev bûyer bû stran û min jî sitra.

***Hûn di derbarê bûyer û qewimandinên li Kurdistanê de çi difikirin?***

Di tevahiya dîrokê de me gelek zor û zehmetî dîtine. Me gelek caran xwîşk û birayên xwe wenda kirikne. Ev bûyer ji zû ve hene, mixabin hê jî dewam dikin. Ev bûyer bi taybetî van demên dawîn li Rojava û Şengalê rûdidin. Yekîtiya gerîllla û pêşmerge ji bo me cîhê kêfxweşiyê ye. Hêviya me ew e ku ev yekîtî berdewam bike.

***Di pêşerojê de tu dê çi xebatan bikî?***

Helbet ez dixwazim gelek albûmên din çêbikim. Dixwazim pêşî çend sîngilan çêbikim. Dilê me heye em klîp jî bikişînin. Ku derfet bibînim ezê konseran bidim. Ji xwe ji ber ku albûm nû derketiye hê ti pirojê di destê min de tune. Lê xwe ji bo pirojeyên baş amade dikim.